

ÇAPA EWROPA

# RÛDAW

ROJNAMEYA KURDÊN DIYASPORA

## Narîna Kurdî dibe nalbend

» 8



Kurd ji bo kar vedigerin Kurdistanê » 14

Bexşîna xwînê te saxlem dike » 15

Li Londonê gundekî Kurdan: Kirkisrak » 7

# FETULLAH GULEN ji RÛDAWÊ re axivî:

# Divê Tirkiye bibe parêzvana mafên Kurdan...

*...li seranserê dinyayê*

10 / 11 »

Hejmar / Nr. 204
27 Pûşper / Juni 2013





| | | |
|---|---|---|
| Deutschland | 1,50 | Euro |
| Österreich | 1,50 | Euro |
| Belgium | 1,50 | Euro |
| Danmark | 15,00 | DKK |
| France | 1,50 | Euro |
| Nederland | 1,80 | Euro |
| Norway | 15 | NOK |
| Schweiz | 2,70 | CHF |
| Sverige | 21,00 | SEK |

www.rudaw.eu
info@rudaw.eu



Geylan bersiva Erdogan da:

## Ez ne Tirkmen im Kurd im!

» 9

Serokê Partiya Pêşverû ya Demokratîk a Kurd li Sûriyê, Hemîdê Hecî Derwêş:

## "Esed 3 caran xwest ligel min bicive min qebûl nekir"

» 4

# Wezîra Întegrasyonê daxwaza paşnavên kurdî kir

**Köln (Rûdaw) -** Wezîra Întegrasyonê ya eyaleta Baden-Württemberg a Almanyayê, Bilkay Öney, ji wezîrê karê hundir yê Almanyayê xwest ku kesên paşnavê wan bi darê zorê li wan hatiye kirin, bikaribin li Almanyayê paşnavê xwe biguherin.

Li Almanyayê kesên sedemeke wan ê gellekî girîng hebe, dikarin paşnavê xwe biguherînin. Lê ji bo guhertina paşnav ne tenê sedemeke giring pêwist e, herwiha divê xwediyên vê armancê karekî û rêyeke dirêj ya burokratîk jî bidin pêşiya xwe.




Wezîra Întegrasyonê ya esiltirk ya eyaleta Baden-Württemberg Bilkay Öney xwest ji bilî hebûna "sedemeke girîng", ew kesên ku paşnavên wan bi darê zorê jî li wan hatine danîn, ew jî bikaribin bi rehetî paşnavê xwe biguherînin. Bilkay Öney ji bo vê yekê jî Asûrî, Suryanî, Ermenî û Kurdên ku bûne hemwelatiyên Almanyayê wekî mînak nîşan dide.

Bilkay Öney di nameya xwe ya ji wezîrê karê hundir yê Almanyayê Peter Friedrich re diyar dike ku gellek caran dema ew bi nûnerên Aramî, Ermenî û Kurdan re rûniştiye, wan jê daxwaz kirine ku ew bikaribin paşnavê xwe yê bi tirkî biguherînin û paşnavên bi zimanê xwe li xwe bikin: "Paşnavê kê bi darê zorê hatibe guhertin, pêwist e bikaribin paşnavê xwe biguherînin."

Zagona paşnavan ya bi hejmara 2525ê ya Komara Tirkiyeyê di 21ê Pûşpera 1934ê de hate erêkirin û ji wê demê û pê de paşnavên bi tirkî li hemû hemwelatiyên Tirkiyeyê hatin danîn.



# Polîsên belçîkî endamên şebekeya kurd girtin

**Koln (Rûdaw) -** Dawiya heftiya borî polîsên belçîkî bi ser endamên şebekeyeke ku penaber bi rêyên qaçaxî derbasî Brîtanyayê dikirin de girt û hemû endamên şebekeyê ku Kurd in binçav kirin.

Di encama serdegirtinê de 5 endamên şebekeyê hatin girtin. Li gor agahdariyên polîsên belçîkî, şebekeyê penaber bi rêyên qaçaxî ji Belçîka û Frensayê dibirin Brîtanyayê. Li sînorê Frensayê ew penaber li qemyonan siwar dikirin û bi rêya keştiyan ew digihandin Brîtanyayê.

Berdevkekî polîsê bajarê Brugge da zanîn ku her şev derdora 50 penaber li parkên qemyonan li benda rêkirina Brîtanyayê diman. Ji bo rêkirina penaberan di konteynerên qemyonan de jî heta 4 hezar Euro dihatin standin. Penaberên ku bi vê rêyê digihiştin Brîtanyayê bi taybetî ji welatên wekî Afganîstan, Pakîstan, Hindistan û Îraqê bûn.

Li gor rojnameya Flanderninfo, endamên şebekeyê yên kurd dema tiştek ne bi dilê wan baya, tehda li penaberên ku dixwestin biçin Brîtanyayê dikirin. Ji hêla din ve, li gor agahdariyên ku polîs belav kirine, haya gellek şoferên qemyonan ji hebûna penaberan di konteynerên wan de nebû. Dema şofêr pê dihisiyan ku di qemyonên wan de penaber hene û dixwestin wan ji qemyonên xwe derînin, serê wan bi endamên şebekeyê re dikete belayê.



Emine Aydemir li Kölnê stûdyoyek fîtnesê ji bo jinên misilman vekiriye û li wir destmal serbest in.

## Dadgehê biryar da

# Li stûdyoya fîtnesê desmal qedexe ye

**Köln (Rûdaw) -** Heta niha di gellek qadên jiyanê de qedexeya wergertina desmalan ya jinan diket rojevê lê vê carê ev qedexe ji bo cihekî balkêş bû mijara dozekê.

Ji ber li bajarê Bremen yê Almanyayê xwediyê stûdyoyeke fîtnesê li mişteriyeke xwe qedexe kiribû ku bi destmalê sporê bike, doz çû dadgehê. Wekî sedema lidijderketina wergirtina desmalê, xwediyê stûdyoyê metirsiya birîndarbûna wê mişteriyê ya di dema sporê de diyar kir.

Dadgeha eyaleta Bremenê di dozê de maf da xwediyê stûdyoya fîtnisê û di biryarnameyê de diyar kir ku jinên bi desmal dikarin di dema sporê de xwe birîndar bikin. Herwiha hate destnîşankirin ku di girebesta wê stûdyoya fîtnesê de ji xwe behsa qedexeya desmal, gûstîlk, bazin û guharan di dema antremanê de tê kirin.

Jina misilman a bi desmal piştî par li wê stûdyoyê dest bi sporê kiribû, xwediyê stûdyoyê bi hênceta wergirtina desmalê metirsîdar e, girebesta pê re betal kiribû. Jina ku dixwest bi desmalê sporê bike, bi sedema ku xwediyê stûdyoya fîtnesê bi wê helwesta xwe ew diskrîmîne kiriye doz vekiribû.

Par mehkemeyeke herêmî daxwaza jina ku doz vekirî red kiribû û li ser vê yekê wê doz biribû mehkemeyeke bilindtir. Mehkemeya herêmî jî wê demê di biryara xwe de anîbû zimên ku ti pêwendiya qedexeyê bi mijarên olî ve nîne lê bi vê qedexeyê pêşiya xwebirîndarkirina di dema sporê de tê girtin.

## Peyamên we belaş tên belavkirin

Hûn dikarin peyamên sersaxiyê, pîrozbahiyan, agahiyên derbarê hemû cûreyên çalakiyan bi rêya e-mail a me (**info@rudaw.eu**) ji me re bişînin. Bi şertê ku nivîsên we ji 100 peyvan ne dirêjtir bin, em ê wan li vir belaş biweşînin.

Rûdaw

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
ako@rudaw.net

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nesredin@rudaw.net

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Rêveberî û belavkirin**
Sabir Yasîn
sabir.yasin@rudaw.net

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçî

**Marketing û reklam**
Sabir Yasîn
sabir.yasin@rudaw.net

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

**Pêwendî**
Telefon: +49 (0) 221-58 87 22 80
Fax: +49 (0) 221-58 87 22 82
info@rudaw.eu
www.rudaw.net / www.rudaw.eu

**Belavkirin / Vertrieb:**
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.



# Çalakvanên Rojhilat dikarin texlîda BDPê bikin?

Wêne: Rûdaw

Fûad Heqîqî
*Hewlêr*

Kurdên Rojhilatê Kurdistanê li ser birêvebirina xebata sivîl û parlemenî ji bo bidestxistina mafên xwe ji hev cuda difikirin. Çalakvanên sivîl û siyasetvanên Rojhilat dibêjin pêwist e bi hişyarî ligel rewşê reftar bikin. Lê partiyên Rojhilatê Kurdistanê di wê baweriyê de ne ku ti derfet ji bo xebata sivîl û siyasî li Îranê nîne.

Her çiqasî partiyên Rojhilatê Kurdistanê ji çendîn salan ve ye dikin hewar û dozê li welatiyên kurd dikin ku hilbijartin û çalakiyên siyasî yên Îranê boykot bikin, lê sal bi sal beşdariya xelkê di hilbijartinan de zêdetir dibe û çalakvanên kurd ên li Îranê jî xelkê germ dikin, da ku beşdarî proseya siyasî bibin.

Li Bakurê Kurdistanê xebata çekdarî li dijî hikûmeta Tirkiyeyê bi rêya PKKê, herwiha xebateke sivîl û parlemenî jî bi rêya BDPê tê meşandin. Niha çalakvanên Rojhilatê Kurdistanê li hundirê welêt dixwazin bi xebata sivîl nêzîkî desthilatdarên Îranê bibin û doza mafên xwe yên siyasî û çandî bikin. Lê daxwaza pirraniya partiyên Rojhilatê Kurdistanê rûxandina rejîma niha ya Îranê ye û li gor wan ew rejîm tiştekî ji Kurdan re nake.

Ev di demekê de ye ku wan niha dev ji xebata çekdarî berdane û li leşkergehên xwe yên li Başûrê Kurdistanê li rewşê dinêrin. Lê belê PKK, wek ku di proseya vekişîna hêzên wan de diyar bû, tenê li nav axa Tirkiyeyê de xwedî 2500 gerîllayan bû, ku niha dest bi vekişînê kirine û tên Başûrê Kurdistanê.

Berdevkê berê yê bereya hevgirtî ya Kurdan li Tehranê, Dr. Rehîm Ferhmend, derbarê wê yekê de ku çalakvanên navxwe dikarin bibin wek BDPya Bakurê Kurdistanê, dibêje: "Her welatek taybetmendiya xwe heye, em naxwazin çav li xelkê bikin. Lê em dixwazin rola xwe wek Kurdên Rojhilatê Kurdistanê bilîzin. Kurdên Îranê xwediyên ramana xwe ne. Lewma eger em bi rola xwe rabin, emê bi ser kevin." Partiyên li derveyî Rojhilat jî rijd in ku Îran û sîstema siyasî ya Îranê xwedî taybetmendiyên xwe ne. Ew dibêjin Tirkiye welatekî nîvdemokratîk e û rê dide karê siyasî û parlemenî. Lê li Îranê çalakiyên bi vî rengî nînin.

Bi baweriya endamê polîtburoya PDKÎ Heme Nezîf Qadirî, "atmosfera siyasî ya Îranê berevajî Tirkiyeyê ye û girtî ye. Nayê çaverêkirin ku ev welat derfeta çalakiya siyasî û xebata sivîl bide hêzên siyasî. Lewma ti asoyek nayê dîtin ku derfet ji xebata siyasî û sivîl a Kurdan re peyda bibe."

**Atmosfera siyasî ya Îranê berevajî Tirkiyeyê ye û girtî ye. Nayê çaverêkirin ku ev welat derfeta çalakiya siyasî û xebata sivîl bide hêzên siyasî.**

Li Rojhilatê Kurdistanê di sala 1997ê de derfetek ji bo hin çalakiyên sivîl û rêxistinî derket holê. Wê demê nûnerên reformxwazên kurd di gera şeşem a parlementoya Îranê de fraksyona nûnerên kurd bi mebesta danûstandinan ligel berpirsên Îranê saz kirin. Ev fraksyon di gerên dûre de jî pêk hat, lê bandora wê nebû û di dozkirina daxwazên Kurdan de jî lawaz ma.

Ev eniya hevgirtî ya Kurdan wek yekem rêxistina siyasî ya kurdî piştî hatina desthilata Komara Îslamî ya Îranê ji aliyê reformxwaz û çalakvanên siyasî yên kurd li hundir pêk hat. Lê heta niha moleta yasayî ya çalakiyan nestandiye.

Bi dîtina xwendekarê doktorayê li beşa zanistên siyasî ya zanîngeha Tehranê, Tahir Xedîw, bizavên siyasî yên navxweyî li Rojhilata Kurdistanê "ne di astekê de ne ku bikarin daxwazên Kurdan bişopînin û formûle bikin. Ji ber ku ew tenê navendek in ji bo dema hilbijartinan ku çend heftiyan çalak dibin û dûre çalakiyên wan namînin. Kêşeyeke wan a din ew e ku nekarîne pêwendiyê ligel çîna rewşenbîr û elîta civaka Kurdistanê dirust bikin."

Piştî rûxandina sîstema paşatiyê di sala 1979ê de, rêxistinên siyasî yên kurd wek PDKÎ beşdarî gera yekê ya hilbijartinên parlementoya Îranê bû, lê ne wek fraksyona partîzanî. Herwiha di hilbijartinên gera yekê ya parlementoya pisporên rêberiyê de Dr. Ebdilrehman Qasimlû wek nûnerê parêzgeha Urmiyê deng anî. Lê ji ber gefa Ayetullah Xumeynî nekarî beşdarî wê parlementoyê bibe. Ji wê demê ve ti nûnerekî kurd ku doza pêkanîna hikûmeta navçeyî ji bo Kurdan û bidesxistina mafên bingehîn ên Kurdan kiribe, rêya hilbijartinan li ber wan nehatiye vekirin.

Dr. Ferhmend dibêje: "Di 8 salên borî de me hewldanên zêde kirin ku dozên Kurdan pêşkêş bikin, ku serokkomarê niha jî dozên me yasayî dîtin û qebûl kir û soza cîbicîkirina wan jî da. Em hewl didin li welatê xwe bêyî alozî dozên xwe bi awayekî eşkere ragihînin."

Tahir Xedîw jî dibêje eger bizavên siyasî yên li hundirê Kurdistana Îranê bikarin xwe rêkbixin, helbet bi gotareke neteweyî, bi şertê ku ligel rewşa Îranê bigunce, dikarin bibin cihê hêviya Kurdan, "lê niha ev şiyana wan nîne, ji ber ku pêdiviya çalakiyên sivîl bi rêkxistinê heye."

### Çalakvanên kurd hevkariya Rûhanî dikin

"Deng nedin kesên ku baweriya wan bi perçiqandina gel û olên cihê heye", ev dozek bû ku Hesen Rûhanî di dema propagandaya hilbijartinan de li xelkê Rojhilatê Kurdistanê kir.

Hesen Rûhanî di daxuyaniyekê de soz da ku parêzerê maf û pêgeha kêmîneyên piştguhkirî be, helbet di çarçoveya destûr de. Ji bo piştrastkirina wan jî ragihandiye ku cîgirekî taybet destnîşan dike ji bo şopandina mafên netew û olên cihê.

Çalakvanê siyasî yê kurd û yek ji piştevanên Hesen Rûhanî, Ebdulla Suhrabî, ji Rûdawê re got: "Xelkê Rojhilatê Kurdistanê bi zanebûn dengê xwe dan gotara cihê ya wî berbijarî, ji ber ku bernameya wî ya pêkanîna beşekî ji mafên wan ên siyasî hebû."

Suhrabî, ku nûnerê berê yê Merîwan li parlementoya Îranê bû, dibêje ku çalakvanên kurd li Rojhilatê Kurdistanê amade ne ji bo cîbicîkirina sozan hevkariya Hesen Rûhanî bikin.


Wêne: Rûdaw

## Hemîdê Hecî Derwêş:

# "Esed 3 caran xwest ligel min bicive min qebûl nekir"

- "Li Qamişloyê balafir nîv seetekê li benda min ma ji bo ku min bibe Şamê lê neçûm."
- "Biryara me ne ji Silêmaniyê ne jî ji Hewlêrê, lê ji Qamişloyê derdikeve."
- "Em dixwazin lê pêwendiya me bi Îranê re tine ye."
- "Em neketine destê Yekîtiya Niştimanî ya Kurdistanê."
- "Eger PYD bixwaze herêmên kurdî bixe destê xwe, emê şerê wê bikin."
- "Qamişlo jî bêyî şer teslîmî me bikin, em memnûn in."

*Hemîdê Hecî Derwêş yek ji damezrênerên tevgera siyasî ya kurd li Sûriyê ye. Herwiha ew yek ji wan damezrêneran e ku li hêj dijî. Ew dostekî nêzîk yê serokê Iraqê Celal Talabanî ye û niha li Silêmaniyê dimîne.*

Em li ofîsa Partiya Pêşverû bûne mêvanê Hemîdê Hecî Derwêş. Ew bi ferehî behsa siyaseta kurd li Rojavayê Kurdistanê dike. Her çiqasî ew nêzîkî 80 salî ye jî, lê hêj dikare ji mirov re panoramaya siyasî li Kurdistanê bi detayî pêşkêş bike.

Ew behsa pêwendiya xwe ligel tevgera kurd li Bakurê Kurdistanê dike. Behsa hevdîtinên xwe ligel Barzanî, Burkay û Ocalan dike. Dibêje dema ku wî serokê Konseya KCKê Murad Karayilan dît, jê xwest ku vê pêvajoyê bi şêweyekî siyasî bibin serî.

Di hevpeyvîna ligel Rûdawê de di bareyê pêwendiyên di navbera partiya xwe û PYD de got: ***"Em li ser du xalan gihiştin hev. Yek şerê rejîmê, ya din jî şerê li dijî grûpên tundrew. Ew grûpên ku êrişî Kurdistanê kirin, yek ji wan Newaf Beşîr e. Heta hinek ji wan grûpan gotin Hemîd û hevalên xwe em şikandin, ne PYDê. Hejmarek ji wan li cem me dîl hatin girtin, min hem ji hevalan re, hem jî ji PYDê re herroj telefon vedikir, min digot nabe tiliya yekî ji wan birîn bibe. Min got baş bi wan re bidin û bistînin."***

Li ser pêwendiya PYDê bi rêjîma Sûriyê re jî, Hemîdê Hecî Derwêş wiha dibêje: ***"Dibêjin rejîmê herêmên Kurdan dewrî PYDê kir. Ev ji bo me Kurdan baş e. Dema ku şer nebe û teslîm bikin, ev baş e. Herêma me, Efrîn, Kobanî û Cezîrê teslîmî me bikin, ser çavan. Bêyî şer, bêyî teyare. Vê jî binivîsîne; Qamişloyê jî bêyî şer teslîmî me bikin, em memnûn in."***

Lê dema ku PYDê dest danî ser herêmên Kurdan û rê li ber partiyên din girt, wê helwesta we çi be? Sekreterê Partiya Pêşverû dibêje: ***"Wê demê emê qebûl nekin, tu me nas nakî, em Partiya Pêşverû ne, em ne wilo rihet in. Emê şerekî dijwar bikin."*** Hemîdê Hecî Derwêş wiha berdewam dike: ***"Niha tiştê em bikin ewe ku xaniyekî kurd xerab nebe. Em berê feqîr in, mala me xerab bibe emê li kolanan bimînin. Ji bo vê yekê jî, em bi PYDê re tevdigerin."***

Li ser pirseke girêdayî pêwendiya Partiya Pêşverû bi hikûmeta Sûriyê re û eger were xwestin ewê bi rêjîmê re rûnin yan na, sekreterê giştî Hemîdê Hecî Derwêş diyar dike ku pêwendiya wan bi rejîma Sûriyê re tine ye û wiha dibêje: ***"Pêwendiya me bi hikûmetê re tine ye, lê eger were xwestin û bi biryara partiyên kurd be, emê rûnin. Ez vê jî ji te re bêjim, serokê Sûriyê Beşar Esed sê caran xwest ligel min bicive lê min qebûl nekir. Balafira ku dixwest min bibe Şamê, li balafirxaneya Qamişloyê nêzîkî nîv seetekê li benda min ma, lê ez neçûm. Kirin nekirin, ez neçûm."***

**Çima neçûyî?**

Eger em partiyên kurd bi hev re ne mutefiq in, em bi tenê herin emê wenda bikin.

**Eger Rûsya bixwaze?**

Rûsya çi ye! Ez berjewendiya Kurdan ne bi Amerîka didim ne jî bi Rûsyayê.

**Di navbera we û Îranê de pêwendî hene?**

Na, me dixwest hebe lê tine ye.

**Lê Tirkiye?**

Di navbera me û Tirkiyeyê de jî pêwendî tine ne.

**Hûn neketine destê Yekîtî?**

Kîjan yekîtî?

**Yekîtî Niştimanî Kurdistan.**

Na, Partiya Pêşverû nakeve destê kesekî.

**Rast e dema ku tê gotin li Sûriyê Kurd bûne du cebhe, yek Partî ye, yek jî Yekîtî ye?**

Na, em vê ti caran qebûl nakin. Hinek gellek hewl dan, lê ti caran du cebhe tine ne, Kurdên Sûriyê yek cebhe ye.

**Biryara Kurdên Rojava ji kû derê derdikeve?**

Vê baş baş binivîsîne, biryara me ji Qamişloyê derdikeve, ne ji Silêmaniyê, ne jî ji Hewlêrê. Eger biryara me ne ji Qamişloka evînê be, em qebûl nakin.

*Hevpeyîn:* ***Dilbixwîn Dara***

# Almanya penaberan ji Sûriyê qebûl dike




**Seyîdxan Kurij**

Hikûmeta Almanyayê ji bo qebûlkirina penaberên ji Sûriyê bernameyek amade kiriye.

Rêxistina Penaberan ya Neteweyên Yekbûyî (UNHCR) ji bo vê biryarê hikûmeta Almanyayê pîroz dike. UNHCR ji bo bernameya qebûlkirina penaberan malperek ava kirîye.

Kesên ku bixwazin bi rêya vê bernameyê werin Almanya, dikarin ji malpera jêrîn agahiyan bistînin.

Di malpera UNHCR de formûlarek serlêdanê heye, kesên ku bixwazin endamên malbata xwe bînin Almanyayê, divê wê formûlarê tije bikin û bidin buroya UNHCR ya li Libnanê. Lewra encax penaberên ku li cem buroya UNHCR ya Libnanê hatinê qeydkirinê, dikarin werin Almanyayê.

***Ji bo agahiyên berfirehtir***

*030 - 202 202 21*

***Wezareta Karên Hundir:***

*http://www.bmi.bund.de/SharedDocs/Kurzmeldungen/DE/2013/04/unhcr-syrische-fluechtlinge.html*

***UNHCR***

*http://www.unhcr.de/unhcr/in-deutschland/aufnahmeprogramm-syrien.html)*

## Mamosteya zanîngeha Gdansk li Polonyayê, Dr. Maria Gidz:

# Dîrok û çanda gelê kurd û Polonyayê gellekî nêzîkî hev in

*Rojnamevan û mamosteya zanîngeha Gdansk li Polonyayê Dr. Maria Gidz yek ji wan biyaniyên ku ji mêj ve doza Kurdan dişopîne ye. Bi taybetî piştî kîmyabarana Helebçeyê wê xwe bêhtir bi doza kurdî ve mijûl kir. Piştî serhildana 1991ê ya li Başûr û ku pêla koçberiyê destpêkir, wê xwe gihand cem Kurdên ketibûn ser rêya koçberiyê. Wê heta niha sê pirtûk derbarê Kurdan de nivîsandine. Doktoraya wê jî her li ser Kurdan bû, bi sernavê “Kêşeya Kurdî û awayê çareserkirina wê”. Dr. Maria Gidz rojên derbasbûyî bi armanca ku biçe Rojavayê Kurdistanê, xwe gihandibû Dihokê û li wir pirsên Rûdawê bersivandin.*

**Rûdaw: Çima we doktoraya xwe derbarê kêşeya kurdî de nivîsand?**

Dr. Maria Gidz: Ev pirseke zehmet e. Dibe ez bi xwe jî bersivê bi tevayî nizanibim. Lê dizanim ku dîroka gelê kurd gellekî balkêş e. Ez dibînim ku dîroka gelê kurd û ya Polonîyan gellekî nêzîkî hev e. Em jî demeke dirêj weke we bê dewlet bûn. Li ser sê welatan dabeşkirî bûn: Rûsya, Awisturya û Almanya. Lê hûn li ser çar dewletan dabeş bûne. Piştî cenga duyem a cîhanî, me karîbû xwe ji destê van welatan rizgar bikin. Ji bilî vê jî, ji aliyê doz, çand, mûzîk, mêvandarî û mirovdostiyê ve cudahiyeke mezin di navbera gelê kurd û polonî de nîne.

**We pirtûkek xwe bi sernavê “Giriyê Kurdan” weşand, çima ew nav?**

Bi rastî rewşa we giriyekî ewqasî aloz e. Doza we wiha girêdayî ye ku zehmet e tu bizanî pêşeroja Kurdan çi pê tê û ev girî çawa dibe. Cîranên we wek Iraq, Îran, Tirkiye û Sûrî hene. Ti carî dilê wan bi we naşewite. Naxwazin bi ti awayî alîkariya we bikin. Xema wan a çareserkirina pirsgirêka kurdî jî nîne. Li Polonyayê heman kêşeya me hebû. Ya ku ji aliyê min ve balkêş ew e ku li cîhanê ti dostê we yê rast nînin ku alîkariya we bikin. Lewma divê hûn bi destên xwe piştgiriya xwe bikin. Wiha jî bi hêza xwe ber bi damezrandina dewletê ve biçin.

**We di wê pirtûkê de behsa çi kiriye?**

Raportek meydanî derbarê koça milyonî ya gelê kurd a di buhara 1991ê de ye. Herwiha behsa dîrok û cografyaya Kurdistanê dike, behsa pêşmerge û jina kurd dike. Lê min bêhtir behsa koça li ser sêgoşeya sînorên Tirkiye, Îran û Îraqê kiriye.

**Di dema koçê de nexweştirîn tiştê we dîtî çi bû?**

Koç karesateke gellekî mezin bû. Zor e tu bawer bikî ku di dawiya sedsala bîstem de tewaneke wiha mezin beramber mirovatiyê bê kirin. Lê li dijî Kurdan hat kirin. Me tevan bawer dikir ku piştî cenga cîhanî ya duyem jenosîd dubare nabe. Lê min bi çavê xwe jenosîd dît. Mêjiyê min rawestiyabû.

**Di nêrîna we de wê Kurd piştî vê demê jî bi tenê bimînin?**

Berê dostên Kurdan nebûn. Lê îro hinek guhertin derketin holê. Hinek dost ji Kurdan re peyda bûn. Lê tenê ew dostên aborî ne. Ji ber niha Kurdistan bûye cihekî stratejî di warê enerjiyê de.

**Bi dîtana we niha derfetek ji bo ragihandina dewletê pêk hatiye?**

Niha şansê we yê mezintir heye. Lê divê hûn yekrêziya xwe biparêzin. Karê partiyan divê ji bo yek armancê be. Naxwe hûnê şansê xwe ji dest bidin.



Wêne: Rûdaw

> **Li cîhanê ti dostê we yê rast nînin ku alîkariya we bikin. Lewma divê hûn bi destên xwe piştgiriya xwe bikin.**

**Gelo metirsiya ku niha Kurd vê derfeta di destê xwe de ji dest bidin heye?**

Ev peymana stratejîk di navbera PDKê û YNKê de tiştekî gellekî baş e. Eger Goran û partiyên din jî bêne nav vê peymanê, wê baştir be. Wekî Kurd şensekî we yê mezin heye.

**Pirtûkeke we ya din bi sernavê “Kurdistan, welatekî bê dewlet” heye. We di çi rewşê de ev pirtûk nivîsand?**

Hûn miletekî nêzîkî 40 milyonî ne û bi hezarên salan li vê erdnîgariyê dijîn. Miletekî xurt, jîr û mêvandost in. Piştî van çend hezar salan çawa dibe dewleta we nebe. Bi rastî ev tiştekî gellekî seyr e. Duyem jî, ev nêzîkbûna ji aliyê ziman û çandî ve di navbera gelê Kurd û Polonî de heye, ez han dam ku vê pirtûkê binivîsim. Pirsek berdewam di mêjiyê min de heye ku piştî şerê cîhanê yê duyem pirraniya miletan bûne xwedî dewlet, çima miletekî 40 milyon kes e nebûye xwedî dewlet?

**Eger em vê pirsê ji we bikin, hûnê çi bêjin?**

Di wê baweriyê de me, ku pêwendî bi wê yekê heye, ku Kurdan li hev nekiriye. Pirr tişt hene ku Kurd şanaziyê pê dikin. Ji wan jî sîstema eşîrtiyê ye. Di nav dil û sawêra her Kurdekî de hesteke neteweyî heye ji bo damezrandina dewleta kurdî. Lê hemû hestên eşîrtî, navçegerî û binemalî ji hestên neteweyî xurttir bûne. Wek mînak Kurdên Rojava hejmara wan 3 milyon e, 16-17 partiyên wan hene. Lê 2-3 partî bes in.

**Tê gotin ku ol ji bo dewletbûna Kurdan bû rêgir?**

Bi qasî ku têgihiştime, ti pêwendiya olê bi pirsa neteweyî nîne. Karê olê pê nîne ku dewletek ji bo neteweyekê pêk bê. Karê olê tenê belavkirina biratiyê ye di nav mirovan de.

Bernameya ti olê nîne ku xelkê han bide, da ku dewletê pêk bînin. Gellek caran bi sedema Îslamê ziyan gihaye Kurdan. Lê guneh ne ji Îslamê ye. Lê belê şaştî ji têgihiştina Kurdan ya ji Îslamê ye. Erebistana Suûdî dewleteke îslamî ye lê dostê Amerîka û Ewropayê ye jî.

Li Ewropayê nêrîneke xirab beramber Kurdan pêk hatiye. Bi taybetî ewên ku zanyariyên wan li ser Kurdan nînin. Tirkiyeyê belav kiriye ku PKK terorîst e, lewma li dijî wê şer dike. Vê wiha kir ku bi çavê terorîstî li hemû Kurdan bê nêrîn. Heta xelkên Polonyayê jî wiha bîr dibin ku Kurd terorîst in.

**Beriya 15 salan dêra Katolîkan daxwaz ji we kir ku hûn lêkolînekê li ser zarokên Kurdan bikin. Ev lêkolîn gihiştiye çi encamê?**

Zarokên Kurdan pirr baştir û têgihiştîtir bûn ji zarokên Ewropayê. Zarokên Kurdan fêrkirî ne ku rêzdariya dê, bav, pîr, kal û kesên ji xwe mezintir bikin.

**Pirtûka we ya dawî bi sernavê “Kî ne em” e. Çima ev nav?**

Ev sêyem pirtûk e derbarê Kurdan de dinivîsim. Lê hê jî min ew çap nekiriye. Pirsa nasnameyê pirr girîng e. Divê her kes pirsê ji xwe bike: Kî me? Kurd im? Frensî me, Polonî me? Lê ji ber ku nasnameya Kurdan hatiye binpêkirin, ji bo wan ev pirs pirr girîngtir e. Di pirtûka “Kî ne em” de min hevpeyvînek bi hunermend Şivan Perwer re çêkiriye. Min 36 rûpel jê re terxan kirine. Herwiha di vê pirtûkê de min behsa 500 hezar Kurdên Rojavayê Kurdistanê kiriye ku bê nasname ne. Herwiha min behsa babetên din ên civakî, siyasî û olî yê ku bi gelê Kurd ve girêdayî ne kiriye.

**Hevpeyvîn:** ***Yûsiv Ehmed***

# Ji ber gefên kuştinê Kerkûk terikand

Zinar Ala

Şalaw Ebdullah li taxa Rehîmawa ya Kerkûkê di heman sala serhildana gel de, di sala 1991ê de, li Başûrê Kurdistanê ji dayîk bûye û li wir jiyana xwe derbas kiriye. Şalaw xwediyê taksiyekê bû û xwendekarên keç dibirin zanîngehê, lê beriya çend mehan ew ji aliyê kesên nenas ve hate tehdîdkirin, ji bo ku ew dest ji karê xwe berde: "Wan kaxezên biçûk li ser cama erebeyê dihiştin û bi sotandina erebeyê ez tehdîd dikirim. Du carên pêşî min tehdîd piştguh kirin lê cara sêyemîn ez bi kuştinê tehdîd kirim." Ji ber van tehdîdan û sedemên din Şalaw biryar dide ku berê xwe dibe Ewropayê. Piştî geşta mehekê ew gihiştiye Spanyayê û daxwaza mafê penaberiyê kiriye.

### Bav û birayê wî ji aliyê kesên nenas ve hatin kuştin

Di sala 2004ê de, li ser rêya Kerkûk – Samarrayê, bavê wî ji aliyê kesên nenas ve hate kuştin, Şalav vê êşa giran wiha vedibêje: "Ew û çar kesên din bi erebeyê diçûn kar, di rê de terorîstan ew girtin, serê wan birrîn û laş jî şewitandin. Piştî 15 rojan asayîşê laşê bavê min dîtin, yan jî tiştê ji laşê wî mabû, ji ber ku wan hemû laş şewitandibûn

**Piştî 15 rojan asayîşê laşê bavê min dîtin, yan jî tiştê ji laşê wî mabû, ji ber ku wan hemû laş şewitandibûn.**

û li kêleka her laşekî nasnameya her kesekî danîbûn. Bûyerke pirr biêş bû, weke kulek di dilê min de ye û heta niha ji bîra min naçe". Piştî mirina bavê Şalaw rewşa malbatê ji asteke xizaniyê derbasî asteke xirbatir bû, ji bo debara malê Şalaw karên wek barkêşî û firotina avê dikir. Beriya çar salan jî dîsa bûyereke trajîk hate serê malbatê, vê care jî birayê Şalaw yê mezin hate kuştin û piştre jî ew ji ber teqîneke xwekujî birîndar bû: "Birayê min şofêrê taksiyê bû, carekê bi erebeyê çend kes birin taxên Ereban lê ew çû û venegeriya. Hêzên asayîşê piştî du rojan cenezayê wî dîtin. Piştî vê bûyerê bi çend mehan li nêzîkî Qelaya Kerkûkê êrişeke xwekujî rûdabû. Ez ligel hevalên xwe diçûm kar, ji ber teqînê hevalên ku bi min re di erebeyê de bûn hemû mirin, ez jî ji heşê xwe çûm û min xwe li nexweşxaneyê dît, sê perçeyên hesinî jî derbasî bedena min bibûn, yek di serê min de bû û yên din ketibûn tenişta min."


Alaw li pêş perçeya jorîn ji monûmenta qurbanên teqîna Atochayê li Madrîdê

Wêne: Rûdaw

Şalaw pênc rojan li nexweşxaneyê ma, birînên wî rêjeyeke seqetiyê jê re peyda kirin û birînên giyanê wî jî hêj kûrtir bûn: "Bav û birayê min hatin kuştin û piştre jî hevalên min, van hemû tiştan bandoreke mezin li min kirin." Şalaw axaftina xwe wiha domand: "Piştî birîndarbûnê min nekarî her karekî bikim, hersê birayên min gelekî xebitîn heya ku pereyên ji bo erebeyekê ji min re peyda kirin, min tenê xwendekarên keç dibirin Fakûlteya Perwerdehiyê û ji ber vî karî jî gef li min xwarin." Şalaw dibêje ku asayîşên PDKê û YNKê guh nedan gazincên wî yên derbarê tehdîdan de: "Ez çûm ba Navçe (asayişên PDKê) û ba Komîteyê jî (asayîşên YNKê), min kaxezên tehdîdê nîşanî wan dan, wan ji min re gotin here erebeya xwe bifiroşe û karekî din bike. Min gote wan ez ji ber êrişeke xwekujî birîndar bûme û nikarim karên giran bikim. Gotin here dîkanekê ji xwe re veke."

### Civaka kevneperest ji keserên wî zêde kirin

Dawiya kulên Şalaw nahatin, sedemên din jî hiştin ku ew ji wê xakê dûr bikeve. Xaltîkeke wî bi berpirsekî polîsên bajarê Ranyayê re zewicî bû, piştî ku xaltîka wî fêm kir ku ew jina çarê ye, wê gulleyek di serê xwe de teqand: "Em gellekî bi vê rûdanê êşiyan, me ti pêzanîn derbarê wî zilamî de peyda nekirin û me nepirsî ka ew zewicî ye yan na".

Lê birîna herî kûr ya Şalaw ya evînê ye, ew dema çend salan evîndarê keçekê bû û gellek caran hewil dabû ku wê bixwaze lê malbata keçikê razî nedibû, cara dawî jî malbata keçikê dawî li hêviyên wî anî: "Ji min re gotin ku ew keça xwe nadin kesekî ku bawernameyeke xwendinê bi dest nexistibe."

Di sibeya 8ê Gulana borî de, dema du erebeyên bombekirî li Kerkûkê teqiyan, gellek kes birîndar bûn û hinek jî mirin. Yek ji wan teqînan li Rehîmawa bû, taxa ku Şalaw lê dijiya. Wê caxê jî Şalaw nû ji Kerkûkê derketibû û berê xwe dabû Stembolê, nêzî mehekê li wir mabû û piştre bi pasaporteke sexte çûbû Senegalê û ji wir jî berê xwe dabû Madrîdê.

Şalaw kêfxweş e ku hate Spanyayê, ew heyranê F.C. Barcelona ye û ew pirr ji heftenameya Rûdawa Werzîşî hez dike, hemû hejmaran li mala xwe diparêze: "Ez her sêşeman li benda Rûdawa Werzîşî dimam. Carekê hevalekî min yê rojnamefiroş hemû hejmarên Rûdawa Werzîşî firotin, ez bê rojname mam û ez gellekî jê aciz bûm, nemaze ku wêneyên Messi tê de hebûn. Min hemû dîwarên odeya xwe bi wêneyên Rûdawa Werzîşî xemilandine." Niha jî hêviya Şalaw tenê ew e ku bikaribe karekî ji xwe re bibîne ji bo ku hinek pereyan ji malbata xwe ya mayî re bişîne.

# Li Kolnê mezintirîn kombûna ji bo Taksîmê

**Koln (Rûdaw) -** Li bajarê Almanya Kolnê xwepêşandaneke mezin bi armanca piştgiriya xwepêşanderên Parka Gezî ya Stembolê hate lidarxistin. Ev xwepêşandan mezintirîn kombûn bû ku heta niha bi armanca piştgiriya xwepêşanderên li Tirkiyeyê hatiye lidarxistin.

Çalakiya ku ji aliyê Federasyona Yekîtiya Elewiyên Almanyayê ve hat lidarxistin, ji hêla medyayê ve bi baldarî hate şopandin. Herwiha gellek derdorên cûda jî bi armanca piştgiriya çalakiyên Parka Gezî tevlî xwepêşandana li qada Heumarktê li Kolnê bûn. Balkêşiyeke xwepêşandanê ew bû ku beşdarên ji fikrên siyasî yên cûda bi alên xwe tevlî bûn. Ji ala Ermenîstanê heta ya Kurdistanê, alên KCKê, Asûriyan, Tirkiyeyê, çepgirên Tirkan, wêneyên rêberê PKKê Abdullah Ocalan, şoreşgerê tirk Îbrahîm Kaypakkaya, damezrênerê komara Tirkiyeyê Mustafa Kemal Ataturk û îdolê şoreşgeriya Amerîkaya Latîn, Ernesto Che Guevara jî hebûn.

### Muxalefeta almanî peyamên derbarê YEyê de dan

Ji bilî peyamên nûnerên sazî û partiyên cûda yên ji Tirkiyeyê, gellek siyasetmedarên alman jî bi peyamên xwe piştgirî dan çalakiyê. Serokê Koma Meclisê ya Partiya Çep (Die Linke) Gregor Gysi, ku ligel gellek parlementerên partiya xwe derket ser dikê, diyar kir ku ew dixwazin Tirkiye bikeve nav Yekîtiya Ewropayê, lê belê bi vê helwesta serokwezîrê Tirkiyeyê ewê emdambûna Tirkiyeyê ji bo niha nepejirînin. Gysi wiha dewam kir: "Erdogan dixwaze Tirkiyeya sekûler bike welatekî sûnî-misilman. Divê pêşiya vê yekê bê girtin."

Berpirsê kar û barên mafê mirovan yê partiya Keskan, Volker Beck, jî wiha axifî: "Erdoganê ku bi gazê êrişî gelê xwe bike û rojnamegeran bike girtîgehan, ji demokrasiyê tiştek fêm nekiriye. Bêguman cihê Tirkiyeyê YE ye lê bi van binpêkirinên mafên mirovan cihê wê di nava YE de nabe."

Derbarê hejmara beşdaran de jî komîteya amadekar ya meşê gellek caran di dema çalakiyê de diyar kir ku hejmar ji 100 hezarî derbas bûye. Polîsê bajarê Kolnê jî bi daxuyaniyeke fermî diyar kir ku xwepêşandan bi awayekî aram derbas bûye û hejmara beşdaran jî weke derdora 40 hezaran diyar kir


Ligel gellek alan, ala Kurdistanê jî li pêş Doma Kolnê hat bilindkirin



Wêne: Rûdaw

Xazal (çep) û Alev Yenigun

### Xwenîşanderan çi xwestin?

**Alev (21) û Xazal (19) Yenîgun:**
Em xwişkên hev in û ji bajarê Salzgitterê hatin. Hin helwestên serokwezîr Erdogan şaş in. Dixwaze li ser cilên ku em li xwe bikin ew biryarê bide. Lazim e ku tevlî jiyana me nebe. Em rêz û aşitiyê dixwazin.

**Ciwan (18):**
Bav û kalên me ji Tirkan re digotin "demokrasî ji we re jî lazim e." Pirraniya wan em fêm nedikirin. Îro ev gotin derket holê. Ez wekî Kurdekî bi ala welatê xwe hatim û min ev gotin ji wan re parve kir û rexneyên xwe jî li wan kirin. Ez piştgiriyê didim ciwanên ku azadiyê dixwazin.

**Sevgî Çaglar (20):**
Ez bang li serokwezîr Erdogan dikim... Xwe tevlî vexwarina me, cilên me, xwezayiyên me, fikrên me û baweriya me neke.


Di festîvalên Kiskisrakiyan de gellek hes digihijin hevdu





# Li Londonê gundekî Kurdan: *Kirkisrak*

**Firaz Baran**

Kirkasrak gundekî bajarê Kayseriyê yê Tirkiyeyê ye ku niştecihên wê Kurd in. Girêdayî Kirkasrakê 14 gundik hene. Hejmara şêniyên Kirkasrakê û gundikên li ser wê derdora 45 hezar e. Niha pênc hezar Kirkisrakî li Londona paytexta Brîtanyayê dijîn. Heftiya borî gundiyên ji Kirkasrakê li Londonê komeleyeke xwe ava kirin. Kirkisrakiyan ji bo komeleya xwe milyonek Pound xerc kirin.

Yek ji kesên ku di nav komeleyê de roleke berbiçav dilîze sosyolog Ahmet Guven e. Guven sekreterê komeleyê û berpirsê kovara Kirkasrakê ye. Herwiha ew stran, klamên şînê, metelok û çîrokên Kirkasrakê berhev dike û kovarekê diweşîne. Ev kovar di warê lêkolînên herêmî de mînak e.

Avahiya komeleya Kirkisrakê ji 2 qatan pêk tê. Qata jêr ji saloneke konferansê ya 280 kesî û qata jor jî ji sê dersxaneyan pêk tê. Ahmet Guven derbarê çîroka hatina gundiyên xwe bo Londonê wiha dibêje: "Xelkê Kirkisrakê bi taybetî piştî salên 1990î hatin Londonê. Di nava 20 salan de hem bûn xwedî cih, hem jî alîkariya xelkê li gund dikin. Xelkê me xebathez in. Zedêyî sed karsazên me li Londonê hene. Karê marketan, fêkîfiroşî û aşxaneyan dikin. Herwiha akademîsyen, mamosteyên dibistanê, parêzer û hesêbgerên me jî hene."

## Ji bo komeleyê bûn yek

Kirkisrakî bi eslê xwe ji Kurecîga ser vi bajarê Meletî ne. Di sala 1820ê de heft malbat ji wê derê bar dikin û hêdî hêdî li derdora Kayseriyê niştecih dibin. Hejmara kesên ji wir di nava demê de bar dikin bilind dibe û dibe 14 gund. Navê gundan hem bi kurdî û hem bi tirkî ne. Lê ew hemû xwe wekî "Kirkisrakî" bilêv dikin. Piştî sala 1950î jî koça ber bi bajaran destpêdike. Îro li bajarên Tirkiyeyê Balikesîrê 70, li Antalyayê 200, li Mersinê 40, li Edenê 40, li Antaqyayê 20, li Sarizê 60, li Pinarbaşiyê 100, li Bandirmayê 30 malbatên Kirkisrakî dijîn. Herî zêde jî li navçeya Balikesîr Altinolukê xwedî cîh in û 850 xaniyên wan hene. Lê belê pirraniya van xaniyan vala ne û xwediyên wan li Ewropayê dijîn. Xwediyên xaniyan her sal mehekê diçin Altunolukê û li wir betlaneya xwe ya havînî derbas dikin. Ji bilî Londonê li Almanyayê 600, li Frensa, Belçika, Awisturya, Holenda û Swisrêyê jî derdora 250 malbatan dijîn.

Ji bo komeleya Londonê, Kirkisrakiyên li welatên cûrbecûr alîkarî dan. Bi armanca piştgiriya komeleyê, hunermend Alî Çam jî ji Almanyayê çû û konserek da. Karsazê navdar Mehmet Tum jî ji Tirkiyeyê berê xwe da Londonê. Ahmet Guven got, "Emê bersiva vê hezkirinê bidin. Li ser hêjayî û nirxên xwe bixebitin. Wek mînak Îbretî (Xidikî Gawrike) aşiqekî gellekî navdar bû. Gulîzar Doxan ji hêla şînbêjiyê de navdar e. Brahîm Armaxan li Tirkiyeyê yekemîn profesorê hunerê bû. Ew kes gundiyên me ne. Emê xebatên wan jî bibîrbînin."

### Gund û zozanên Kirkisrakê

Muxtarê Kirkisrakê yê berê Haydar Perîşan niha li bajarê Almanya Kolnê dijî. Haydar Perîşan navên 14 gund û 20 zozanên Kirkisrakê wiha rêz dike:

**Gundên Kirkisrakê:** *Boston Beli, Gundî Gir, Karron, Mamikon, Nolê Êş, Nolê Qumik, Oxikon-Kulikon, Qalon, Qoliyon, Qilacixon, Qulûton, Quloziyon, Şêxon, Virrîngon.*

**Zozanên Biharê:** *Çondir, Guwece, Gûrlek, Kaniya Dirêj, Kevirî Reş, Nalê Hirçe, Qawox, Qoyîn Dede û Yon Yurdu.*

**Zozanên Havînê:** *Kartê Bodike, Kartê Qawirme, Qir, Qoton, Qomanê Gir, Qomanê Qiçik, Xodê Gir, Xodê Qiçik, Yeli Yurd, Yoxilcê Gir, Yoxilcê Qiçik.*



# DBK li Munchenê çalak bû


Wêne: Rûdaw

**Munchen (Rûdaw) –** Kurdên li bajarê Munchenê niştecih roja îna borî bi çalakiyekê piştgirtiya xwe ji bo Kurdên Rojava nîşan dan û rejîma Beşar Esad şermezar kirin. Li navenda bajêr li meydana Marienplatz mîtîngek hate lidarxistin û bi belavokan bala runiştvanên Munchenê bo ser rewşa Rojavayê Kurdistanê û şerê navxweyî li Sûriyê hat kişandin.

Di mîtîngê de keç, zarok û xortan xwe bi ala Kurdistanê pêçandibûn û muzîka kurdî li meydanê belav dibû.

Çalakiya ku di seet 3yê piştî nîvro de destpêkir û dora 3 seetan dom kir, ji aliyê Destêya Bilind ya Kurdên Rojava ve hatibû lidarxistin. Li bajarê Munchenê 20 hezar Kurd dijîn û nezîkî 2 hezarên wan ji Rojavayê Kurdistanê ne.



# Narîna Kurdî dibe nalbend

Stranbêj Narîna Kurdî berhemeke nû tomar dike û du komên govendê beşdarî vê berhemê dibin.

Adil Akreyî ku karê wênegirtin û montaj û derhênana klîpa strana Narîna Kurdî kiriye, ji Rûdawê re got: "Nalbend berhem û klîpa dawî ya stranbêj Narîna Kurdî ye, ku helbest û awaza wê ji gelerî ne."





# Keçeke misrî fêrî strangotina kurdî dibe

Muzîkjen Cengî Celal Xoşnaw, ku niha li zanîngeha Eskenderiye li Misrê mijûlî xwendina majesterê ye, ragihand ku ew mijûlî tomarkirina berhemekê ye ji bo keçeke misrî ku li heman zanîngehê dixwîne û navê wê Muna Xeyat e.

Cengî Celal derbarê vê yekê de ji Rûdawê re got: "Muna xwendekara beşê muzîkê ye li zanîngeha Eskenderiye û dengê wê pirr balkêş e. Dixwazim bi tevlihevkirina çend berhemên kurdî û erebî, hem hunera kurdî bi gelê Misrê bidim nasîn, hem jî berhemendiya wê keçê bi xelkê bidim nasîn."

Di dîmenekî vîdyoyê de ku heftiya borî hat belavkirin, Muna Xeyat çend stranên kurdî û erebî dibêje û Cengî Celal jî pê re li ûdê dixe. Cengî got ku ew niha mijûlî tomarkirina straneke kurdî û erebî ye ji bo Muna.




**Hewlêr (Rûdaw) -** Ahenga dawî ya olimpiyada strana tirkî destpêka heftiya borî bi beşdariya bêhtirî 200 hezar kesî birêveçû. Xwendevanê kurd Geylan Tahir Xoşnaw stranek bi navê “Xweda heye” got û vê stranê wiha kir ku serokwezîrê Tirkiyeyê Erdogan rabe ser piyan û li çepkan bide.

Li olimpiyada strana tirkî, ku li Stembolê birêve çû û ji 120 welatan tevlîbûn çêbû, Geylan bû çaremîn. Ibrahîm Tatlîses piştre got ku neheqî li Geylan hatiye kirin û rexne li juriya pêşbirkê kirin.

"Paşayê min, nekeve çav xwe de. Tu jî weke min xwedayekî te heye." Ev stran bû ku Geylan Tahir pêşkêşî amadebûyan kir. Geylan di dema gotina stranê de destê xwe bi aliyê amadebûyên bernameyê ve dilivand, ji nişkê ve Erdogan rabû ser piyan û li çepkan da. Geylan dibêje ku berê zanyariya wî hebû ku Erdogan wê di wê bernameyê de amade bibe û got: "Min zanîbû ku amade dibe û plana min jî hebû. Lê ji ber ku dik gellekî mezin bû, dema yekem car rabû min nedît." Li gor Geylan "Erdogan hindekî ketiye çav xwe."

Erdogan piştre di wê programê de axivî û derbarê Geylan de got: "Dilxweş im ku Turkmenekî Îraqî hatiye li vir bistirê." Geylan ji wê gotina Erdogan dilgiran bû û got "dibe ku Erdogan bi rasthatin ev axaftin kiribe, yan bi şaşîtî têgihiştibe. Zehmet e ku ji qestî ve wiha kiribe."

Geylan sala 1999ê li Başûrê Kurdiatanê, li qezaya Şeqlawe ji dayik bûye û xwendevanê dibistana Işik li Hewlêrê ye. Dibistanên Işik ser bi Tevgera Fetullah Gulen tên hesibandin. Lê Erdogan pesnê wî wek zarokekî Turkmen yê ji Hewlêrê da û got "ku guhdariyê li dengê wî dikim, hest dikim ku guhdariyê li Ibrahîm Tatlîses dikim."

### Yekemînê "Tu nimûne yî"

Geylan sala 2011ê beşdarî bernameya "Tu nimûne yî" ya kenala Korek bibû û bibû yekemîn. Piştî wê Geylan Tahir li dibistana xwe pêşwaziya Ibrahîm Tatlîses kiribû, bi stranekê jî ew giriyandibû. Tatlîses jê re gotibû: "Destê dayik û bavê te maç dikim, ku tu perwerde kirine"

Piştî vegera Geylan bo Hewlêrê, ew tevlî bernameya “Rûdawa îro” ya televizyona Rûdawê bû û got "Beşdariya min di vê programê de ji bo danasîna hunera kurdî bi cîhanê bû." Ji xeynî Geylan Tahir, stranbêja kurd Perwaz Hisên jî di nav rojên dawî de bibû mijareke sereke ya medyaya kurdî û heta ya biyanî jî. Perwaz Hisên tevlî bernameya Arab Idol di televizyona erebî mbc de bibû û deng vedabû.

Lê medyaya Kurdistanê girîngiyeke bêhtir dan Perwazê û heta hindek kenalan kurdî zindî bernameya Arab Idol weşandin. Li cem Geylan asayî ye ku ev girîngiya mezin bi Perwazê hate dan û got "ez pirr dilgiran nebûm ku ragihandina kurdî ewqasî girîngî da Perwazê û neda min. Perwaz ewqasî qabilyeta wê heye û şanaziyê pê dikim. Ji nû ve hestê hunerê kurdî li Kurdistanê livand." Lê got ku heta niha wî pêwendî bi Perwaz re nekiriye.

Piştî bernameya “Tu nimûne yî”, Geylan bûye cihê balkêşiya hunermend, navend û pêşkêşvanên programan. Wek Geylan bi xwe dibêje, di wê geştê de ew li 35 bajar û bajarokên Tirkiyeyê beşdarî konsertan bûye: "Li pirraniya wan konsertan ez bi cilên kurdî beşdar bûm û bi pirranî jî min stranên kurdî gotin." Geylan dibêje ku ew her heftiyekê serdana gundê xwe dike, bavê wî jî jê re li sazê dide û ew jî bi dengê bilind distirê. Geylan got ku ew bi niyaze albûmeke stranan bi zimanê kurdî amade bike.

Erdogan herwiha bi pesindaneke mezin gotibû ku Ibrahîm Tatlîsesekî nû peyda bûye. Geylan şanaziyê bi wê yekê dike ku Erdogan bi vî awayî pesnê wî da, lê got "Dixwazim bibim Tatlîsesekî kurd."




Wêne: Rûdaw



## Fethullah Gulen ji Rûdawê re:

# Divê Tirkiye bibe parêzvana mafên Kurdan li seranserê dinyayê

» Min hêstir li ser Enfal û Helebçe barandin.
» Beriya Kurdan divê Tirk xwe wek xwediyên pirsên Kurdan bibînin.
» Fêrbûn û fêrkirina zimanê dayikê yek ji mafên gerdûnî yên mirov e.

Rêberê olî û yê tevgera bi navê wî, Fethullah Gulen, di vê hevpeyvîna ligel Rûdawê de ji bo cara yekê nerînên xwe derbarê pêwendiyên Tirkiye û Kurdistanê, xwendina bi zimanê dayikê li Tirkiyeyê û proseya aştiyê li Tirkiyeyê nîşan dide û dibêje: "Pejirandina xwendina bi zimanê dayikê yek ji prensîpên exlaqî yên pêwist e ji bo dadmendiya dewletê li hember hevwelatiyên xwe."

**Rûdaw: Qewêtiyên we ji bo xelkê û desthilatdaran derbarê parastina zimanê dayikê û xwendina bi zimanê dayikê çi ne, bi liberçavgirtina baweriya Bedî Al-Zeman Seîdê Nursî ku di wesiyeta xwe de ji gelê kurd re dibêje zimanê dayikê biparêzin?**

**Fethullah Gulen:** Hezretê Bedî Al-Zeman Seîd Nûrsî derbarê kêşeyên cîhana îslamî bi awayekî giştî û navçeya rojhilat û başûrê-rojhilatê Tirkiyeyê de, nezanîn, hejarî û dubendiyê wek jêderên sereke dibîne. Gava dibêje nezanîn, mexseda wî ne tenê nezanîna olî ye, lê di heman demê de mexseda wî zanînên ku li gerdûnê jî vedikolin. Gava behsa dubendiyê dike, mexseda wî dubendiyên di nav eşîrên navçeyê de ye. Kêşeya hejarî û cudahiyê di bingeh de girêdayî nezanînê ye. Lewma Seîdê Nûrsî bi dirêjiya jiyana xwe hewl da ku zanîngehekê bi nave "Medrese Al-Zahra" li bajarê Wanê damezrîne.

Ji aliyekî din ve, ji ber ku zimanê erebî zimanê Quran û hedîseyên pêxember e, Bedî Al-Zeman ji bo rakişandina şagirtan ji hemû aliyên cîhana îslamî ji bo vê zanîngehê, da ku bibe mînaka hemû cîhana îslamî, di rêza yekê de zimanê erebî wek zimanê sereke dijimêre. Herwiha ji ber ku zimanê tirkî li seranserê Tirkiyeyê wek zimanê belav ê pêwendiyan bû, zimanê tirkî ji bo xwendin û fêrkirinê pêwist dîtiye. Netewe û reng, milet û êl, ziman jî hemû ayetên Xwedayê mezin in, her neteweyek jî zimanê xwe yê taybet heye.

Xwedayê mezin ew cudahiyên ku di navbera mirovan de hene, ji bo cudahiyê nedanîne, lê wek çawa cudahiyên pîşeyan dibin sedema yekbûn, hevkarî û alîkariyê, bi heman awayî jî ew jî dibin sedema hevnasîn, hevkarî û alîkariyê, di demekê de ku hezretê Bedî Al-Zeman Seîdê Nûrsî behsa vê rastiyê dike. Di pirraniya berhemên xwe de giringî daye fêrbûn û fêrkirina zimanê dayikê. Wek mînak di berhemeke xwe de dibêje "ji ber ku zimanê dayikê siruştî ye, peyv bê gazîkirin ji ber xwe ve tên mêjî." Bi vî rengî diyar kiriye ku zimanê dayikê rêya siruştî ya xwendinê ye. Fêrbûn û fêrkirina zimanê dayikê yek ji mafên gerdûnî yên mirov e. Bêguman nabe bi ti hêncetê zimanê dayikê li miletekî yan li civakekê bê qedexekirin. Ku ev hat kirin, dibe sitem, dibe dijîtiyek ligel derûnê û li dijî derûnê. Lewma qedexekirineke bi vî rengî dom nake. Bedî Al-Zeman di plana"Medreseya Al-Zahra" de behsa wê yekê dike ku li tenişta zimanê erebî û tirkî, ew şagirtên ku bixwazin, dikarin fêrî kurdî bibin û wek ziman jî bikarbînin. Belê, bêguman her civakek zimanê xwe bikartîne û divê bikarbîne. Ne rast e ku netewe, êl û reng bibin sedema cudakariyê û ev nayê pejirandin. Çawa cudakirina netewe û rengan karekî nemirovî ye û tawaneke li dijî mirov e jî, herwiha nabe ziman bibe sedema cudahiyê. Lê divê ji bo hevnasîn, hevkarî û alîkariyê bê bikaranîn. Lewma pejirandina xwendinê bi zimanê dayikê yek e ji wan prensîpên exlaqî ku pêwist e ji bo teqezkirina dadmendiya dewletê li hember hevwelatiyên xwe.

**Di sala 2009ê de, di demekê de ku pêwendiya Tirkiyeyê û Herêma Kurdistanê di lûtkeya aloziyê de bû, we nameyek ji platforma Abant re şand, ku di 15.02.2009ê de li bajarê Hewlêrê hat sazkirin. Peyama we bi geşbînî li siberojê dinêrî. Gelo niha em li kû ne derbarê wê hêvî û mizgîniya ku we di nameya xwe de behs kiribû?**

Ne tenê Tirkiye, birayên me yên Kurd û Kurdistana Iraqê, lê hemû cîhana îslamî ev çend sedsal in di nexweşiyê de dijî. Kêşeyên me li her cihekî wek hev in: nezanîn, hejarî û dubendî. Ev bûne sedema derketina çend kêşeyên din wek bêhêvîtî, fêlbazî, xapandin, bêbawerî, dijmindarî û dijbûn, fişara fikrî û civakî û aborî û jiyana siyasî û sitemkarî. Ew jî dibin sedema girtina rê li ber pêşketina fikirî, zanistî, civakî, aborî û siyasî. Ji ber van hemu tiştan, halê şerpeze yê jiyana me ya çend sedsalan dewam dike. Ev kêşe bi berdewamî ji aliyê wan kesên ku naxwazin dinya rabe ser piyê xwe, ewên ku ji bo berjewendiyên xwe dixwazin li dijî hev bin, tên tûjkirin. Lê bêhêvîtî kelema li ber her kamilbûnekê ye, kelem e li pêşber pêşketin û çûna ber bi kamilbûnê. Lewra bêguman û ji sedî sed em geşbîn in ji siberoja xwe. Geşbîniya bêyî bingeh jî mirov nagihîne ti encamê. Lewra dozkar im ku em nezaniya xwe bikin zanîn û hewl bidin em li samanên xwe ên sererd û binerd xwedî derkevin ji bo nehiştina hejariyê û dabînkirina pêdiviyên me.

Ew peyama ku te behs kir, çar sal di ser re derbas bûn. Hêvî dikim civîna platforma Abant ku te behs kir bûne hoya xêr û xweşiyê. Bi dîtina min li ser wê rêyê gavên giring hatine avêtin. Ligel ku gellek tişt hene di siberojê de bên kirin, mercên dîrokî, Xwedê hez bike nîşanderên wê yekê ne ku li navçeyê rûhê biratî û pêwendiyên me yên cînartiyê xurttir dibin. Qasî ku haya min jê heye, ew dibistan, xwendingeh, karên medyayî û çalakiyên akademîk ên ku li Herêma Kurdistana Iraqê hene, wê bibin sedema pêşvebirina van pêwendiyan. Di vî alî de pêşî erkekî giring dikeve stuyê dezgehên perwerdeyê, karsaz û medyakaran.

**Li Iraq û Kurdistanê ji sala 1994ê ve dibistanên we çalakiyan dikin û ji aliyê xelkê ve bi awayekî giştî pêşwaziyeke erênî li wan tê kirin. Carnan ji aliyê hin hêzan ve, tew li hundirê Tirkiyeyê jî, ev dibistan tên tawanbarkirin ku propagandaya îdeolojîk dikin. Armancên we yên îdeolojîk hene?**

Bi dirêjiya dîrokê ew çalakiyên xêrxwaziyê yên ku ji bo xêra mirovahiyê hatine kirin, hertim hatine tawanbarkirin ku bîr û baweriyeke taybet a dinyayî belav dikin, tew projeyên ku ji aliyê her kesî bi awayekî neyênî tên dîtin, ji aliyê çînekê wek ferzkirina bîr û baweriyekê tên dîtin. Ev zêdeyî nîv sedsalî ye bi gotarên xwe, dersên xwe, konferansên xwe, nivîsên xwe, herwiha serdana xelkê ji aliyê minê feqîr ve, di nav xelkê de me. Bi dirêjiya wê demê hertim ew tometên ku te behsa wan kir, xistin stuyê min jî.

Ji aliyekî ve jî, dibe ku şîretkarên min yê hejar jî bandorek kiribin. Li her çar aliyên dinyayê nemaze sazî û dezgehên perwerdeyî hatine vekirin û belavbûn. Niha wek ji aliyê medyayê hatiye belavkirin, li zêdeyî 140 welatan ew dezgehên perwerdeyê hene. Ev sazî û dezgeh li zêdeyî 140 welatan, ku zimanên wan, ola wan, dîtina wan ji dinyayê re, baweriya wan, îdeolojiya wan, dîroka wan, kevneşopiyên wan, neteweyên wan û rengên wan cihê ne, çalakiyan dikin. Bi awayekî ku ligel hin ji van welatan bi sedsalan şer di navbera me de hebû. Ji aliyekî din ve jî bi kêmanî beşekî giring ê wan kesên ku damezrênerên van dezgehan in, an li wan kar û xizmetê dikin, bi ti awayî Misilmantiya xwe venaşêrin û pêwist nabînin jî veşêrin. Bêguman ev sazî û dezgehên perwerdeyî hestyar in li hember tiştê ku te behs kir li wan welatan ku çalakiyan li wan pêk tînin, ango heta mirov bêje hestyar in li hember propaganda îdeolojî.

Di şert û mercên wiha hestyar de, li dinyayekê ku tew şiyana çavdêrîkirina xerciyên taksiyê jî heye, di atmosferekê de ku dezgehên îstixbaratê xudan hemû hokar û şiyaneke çavdêrîkirinê ne, gelo dikare nehênî bimîne? Piştî derbasbûna nîv sedsalê, eger tew nîşaneke selmandina vê yekê peyda nebûbe, ew tawanbarkirinê heta niha amaje û nîşana çi ne? Bêguman têgihiştin û însafa we qebûl dikim, hukim bi têgihiştin û însafa bilind a cenabê we dikim. Lê dixwazin bînim bîra we ku propaganda îdeolojî di ferhenga me de tine.

Bizav xudan armanca geşbûna exlaqî, belavbûna aştî û perwerdeyeke astbilind e, ku bikare di asta dinyaya pêşketî de be, di çarçoveya rêzgirtina yasa û nirxên xwecihî de. Li Iraq û Kurdistanê jî heman armanca me heye. Propagandaya îdeolojîk ji dinyayekê bingeh girtiye ku ti pêwendiya me bi wê dinyayê re tine. Çareseriya pevçûn, diyalog û gotûbêj, nehiştina nezaniyê, amadekirin û misogerkirina navendeke guncav ji bo pêşketina zanist û teknolojiya, alîgir û piştgirê ewlehî û aştiyê wek propaganda îdeolojî nayê wesfkirin. Vêce jixwe dibistanên bizavên xêrxwazî li her cihekî bin, ligel karbidestên wî welatî di pêwendiyeke nêzîk de ne.

Li gor pîvana karîna çavdêriya min, dibistanên Kurdistana Iraqê bi filosofiya "li rex têkilbûna bi cîhanê re, bi liberçavgirtin û berhestkirina kultûra xwecihî" gavan davêje. Bi rastî nêrîn û dûrbîniya dost û birayên me li vê herêmê bi dirêjiya 20 salên borî hokareke girîng bû ji bo lêxwedîderketina van dibistanan ji aliyê xelkên vê navçeyê ve. Bi dirêjiya dîrokê, bawerî û xemên me li Kurdan re hevbeş bûn. Wan bêyî guhdanên şeperze, xwedîtiya xwe nîşan dan bo van dibistanên ku ji sînga pak a Anatolyayê ve derketine. Ji cografiya Kurdan jî jiyan û geş bûn. Careke din ev bira-

tiya dîrokî teqez kirine.

**Pêwendiyên dostaniyê di navbera Kurd û Tirkan de ber bi pêşveçûnê ve ne. Bi nerîna we, ev xala ku niha ev pêwendî gihîştinê bes e? Eger hûn dibînin ku ne bes e, divê ev pêwendî di çi astê de bin û pêwîst e çiyî din bê kirin?**

Xwedayê me yek e. Qedera me yek e. Axa me yek e. Em li ser heman ax û li bin heman rokê ne. Bi heman bayî henaseyê dikin. Em xwediyê yek bawerî û yek dîrokê ne. Doza me yek e. Îroya me yek e. Siberoja me jî divê yek be. Divê yek be. Pêwîst e her yek be.

Ji pêvî vê, em weke Tirk û Kurd li her aliyê Tirkiyeyê hene. Bi her alî ve belav bûne. Kurdbûn yan Tirkbûn ne bi hilbijartina me bû. Xwedîderketina zimanê dayikê, vêce kurdî be yan tirkî be, ne di çarçoveya vîn û hilbijartina me de bû. Kirina Kurdbûn yan Tirkbûnê, axaftina bi zimanê tirkî yan kurdî bi hokara cudakariyê, ji pêvî cihê matmayî û ziyangihandinê bi herdu aliyan ve gelo ti wateya wê ya din heye?

Ev cografyaya bi dirêjbûna dîrokê bûye cihê hevjiyana aştiyane ya gellek ol û kultûrên cuda. Kurd û Tirk di dema vê dîrokê de tevlihev bûn. Heman xweşî û nexweşiya wan a dîrokî hebû.

Ehmedê Xanî, Melayê Cizîrî, Feqiyê Teyran, Mewlana Xalid, Selahedînê Eyûbî, Bedî Al-Zeman Seîdê Nûrsî û çend rewşenbîrên din. Ev nirxên hevbeşiya me ne, ku hemû bandora wan li ser hevjiyana Kurd, Tirk, Ereb û neteweyên din hebû. Ew qewîtiya Mela Mistefayê bav ku birêz Mesûd Barzanî çend demên cuda nîşan pê kiriye: "Bi Tirkan re baş bin. Kêşeyan ji bo Tirkan pêk neyînin. Herdem bi wan re hevpeyman bin." Ev têbînî bi rastî derbîra hesta herdu aliyan e û taybetmendiyeke balkêş e.

Tevî vê pêwendiya ku di navbera herdu neteweyan de di 100 - 150 salên borî de birîndar bûbe, lê bi sedema vê pêwendiya dîrokî ya kûr, ewqasî xurt e ku bi hêsanî qut nabe. Bi rastî ev hembêzkirina xelkên Anatolyayê di dema koça mezin a xelk û pêşmergeyan de (koça mezin) bo gelê Kurd, bû hokara lezkirina asayîbûna pêwendiyan. Hevîşweyê min ku gellek hêstir rijandin ji bo Helebçe û Enfalan, hemû xelkên Anatolyayê dilê wan şewitî beramber wê karesata dilazarker.

Di vê heyamê de jî ku pêwendî ber bi xurtbûnê ve diçin, tenê çareserkirina kêşeya asayişî û pêwendîdaran nîne. Lê belê pêwîst e dubare pêwendiyên kultûrî û dîrokî xurttir bibin heta ku careke din qut nebin.

Li vir ewa ku li ser Tirkiyeyê ye, bi qasî pêdana hemû maf û azadiya welatiyên Kurdên xwe, ewqasî jî dirêjkirina destê alîkariyê ji bo Kurdên navçeyên din ên cîhanê, ku di kêşeyê de ne, di stûyê wê de ye. Herwiha bo parastina mafê wan Kurdên ku bi hokara siyasî, olî û neteweyî ketin pirsgirêkan, di rêya rêxistinên navdewletî de û berî tevan Neteweyên Hevgirtî. Herwiha bibe nûnera parêzgar ji mafên wan re, ji bo xatirê parastina heqiyê.

Divê em bibin dijminê dijminatiyê. Ji her hokareke jihevdûrxistinê dûr bikevin. Beriya Kurdan divê Tirk xwe xwediyê pirsên Kurdan bibînin. Divê beriya Tirkan Kurd xwe alîgir û piştgirên pirsên Tirkan bibînin. Ev pêwendiyên ku di rêya perwerdeyê destpêbûye, dibe ku di siberojê de bibin hokarên geşkirina çalakiyên akademîk, kultûrî û aborî. Tirkiye ji vî alî ve bibe dergehek ji bo vebûna Kurdan ber bi cîhanê ve.

**Niha li Tirkiyeyê qonaxeke aştiyê destpêkiriye. Em dibînin ku herdu miletên Kurd û Tirk ji dil alîkariya vê qonaxa hestyar dikin. Nêrîna we çi ye li ser van hewldanên ku ji bo alîkariya vê qonaxa aştiyane ji aliyê herdu miletên Kurd û Tirk ve derdikevin?**

Bi rastî cihê matmahiyê ye eger alîkariya hemû celebên çalakiyan neyê kirin, ku bibe sedema ragirtina xwînrijîna ku bi salan e li vê navçeyê dibe. Jibîrkirina azarên borî, firehkirina asoya bîr û cîbicihkirina karê bingehîn bi binemaya sereke ya vê qonaxa aştiyê tê danîn.

Divê pirr bi xurtî em ji her karê ku bêhna metirsiya cudahiya nijadî û mezhebî jê bê, dûr bikevin. Hişyarkirin ji bûna bi dardest û bûna bi sedema zemînesazkeriya fitne û cudahiyê li vê navçeyê û li welatên din jî. Pêwîst e pirr bi jîrbûn rêgirî li ber çandin û şînhatina tovê fitne û cudahiyê bê kirin, li vê navçeyê û li welatên din jî.

Herdem divê ev yekbûn û hevgirtin di navbera me de dutaq bê kirin. Divê em bidin dû derfeta nû, bi taybetî di warê aborî û kultûrî de, bo dutaqkirina hevgirtin û biratiya me. Zêdekirina alîkarî û piştgiriya hev, ji bo dîtin û lêkolîna derfetên nû. Ev dezgehên ku nûneriya xelkê dikin, divê bilez gavan bavêjin ji bo belavkirina hemû awayên kar ku hokar bin bo biratî û piştgiriya hev û yekîtiyê. Bûna hemû celebên destpêşxerî û karên bingehîn dibe rêpêşander ji bo karmendên vê navçeyê. Bi taybetî dezgehên perwerdeyî û rêxistinên civaka sivîl, di sepandina vê kultûrê de roleke sereke dibînin di pêkanîna nirxên civaka dijî tundûtîjiyê.

Berevajî serdema modern, ev xelkên ku bi xelkên Rojhilata Navên tên binavkirin, serdemekê li bin konê aştî, giranbuha û kultûra civakî dijiyan. Kurd, Tirk, Ereb, Xiristiyan, Misilman û Cihû, hemû xwediyên kultûra hevjiyanê bûn. Dîsa saxkirin û bilindkirina giranbuhayên kultûr û praktîzekirina di jiyanê de erkê li ser milê karmendên perwerdeyî û rêxistinên civaka sivîl e. Eger karibe derfeta nû û alternatîv fireh bike, bi awayekî ku xort hêviyê li ser teror, tundûtûjî û şer girênedin, bi vî awayî hewla aştî û hevjiyanê serketîtir dibe.

**Da ku ev proseya aştiyê, ku niha li Tirkiyeyê di holê de ye, bigihije encamê, çi erk dikeve stûyê Tirk û Kurdan?**

Dilsozî, hevrêzdarî, herweke ku di gotineke pîroz a pêxember de hatiye, ew tişt in ku em jî xwe re dixwazin, em ji xelkê re jî bixwazin. Ew tişt in ku em ji xwe re naxwazin, em ji xelkê re jî naxwazin. Ji wê jî zêdetir, weke ku di Qurana pîroz de şanazî pê hatiye kirin û li Medîneyê yek bû ji taybetmendiyên pirr girîng ên Ensaran, ew jî girîngîdana beramberiyên me. Bawer im ev dibin sedema kurisandin û hişkkirina rehên kêşeyan. Pêwîst e rêxistinên civaka sivîl yên Kurd û Tirkan hewl bidin zemînsaziyê bikin û mirovan li ser van binemayan coş bikin.

Ji pêvî vê, pirr girîng e ku tevger li ser xwe bin. Herwiha axaftin giştgir û lixwegir bin. Bi ti awayî bêdeng nebin. Divê tev pirr hûrbîn û jîr bin. Ji gurrbûnê dûr bikevin. Bi hatûhewar, diruşm û sloganan kêşe çareser nabin. Ewên ku dixwazin ber bi fitne û xirabiyê ve herin, rexne û pêşniyazên wan bi awayê rêpêşandan be bo kesên din. Ev pêşniyazên dirust ên ku tên ber destên berpirsan, pêwîst e di çarçoveya raport û bi awayekî bêsûc derkevin. Pirs bi hatûhewar, sûtandin, wêrankirin û kuştinê na, lê belê divê di rêya aqil re bi hêminî çareser bibin.

Bi sûdwergirtina giştî li navçe û navendên aram û asayiş, bi awayekî gav bi gav: Pêwîst e li ser tevan perwerde, pişt re jî aliyên din ên aborî, civakî, rewşenbîrî û pêwendiyên moralî ber bi pêş ve bên birin. Ji ber vê mebestê, wek me'şera wijdan binav dibe, pira di nav dilan de, projeya hevbeş ji rojava bo rojhilat, ji rojhilat bo rojava destpê bibe û karîn û amanca wan ên ku hene bên zêdekirin.

Ji aliyekî din ve, ev cihên ku pirraniya nişteciyan Kurd in, bibin navendên kêşkirinê, bi taybetî pirr girîng e perwerdeyên van navçeyan bibin navendên balkêş. Vêce ku kêşeyên niha, ku ya girîngtirîn ji wan perwerde ye, hatin çareserkirin, pirraniya kêşeyan çareser dibin. Her di dema borî de, ewên ku bêkar û nexwendevan bûn, bi xwe wek welatiyên pile du hatine berçav. Di demekê de ku xelkên vê navçeyê kesin pirr jîr in û landika çend şaristanên girîng bûn. Pêwîst e ji vî hawê derûnî rizgar bibin, yan bi wateyeke din, weke ku dibêjin, hestê wan bi kêmzanînê. Weke pêwîstiyeke prensîpa biratî û wekheviyê, divê alî ji wan tevgeran dûr bikevin ku hestên hev birîn dikin.

Li vir xaleke pirr girîng heye, ew jî ev e: Maf û azadiya mirovan, tiştên nînin ku kesin yan hêzin bidin. Lewma nabe em bendewarê kesekî bin. Ev Xwedayê ku em wek mirov daye me tevan. Eger pêxember be jî, ji aliyê mirovî û afirandinê ve hemû kes weke hev in. Eger di destpêkê de danpêdan bi vê wekheviyê nebû, ne dadperwerî û ne yasa jî berhest nabin.

Ji vî alî ve pirr pêwîst e em xwe ji helwêst, tevger û nîşanên dana wî mafî û wê azadiya bingehîn, ya ku sermiyana mirov bi xwe ye, û bikaranîna weke cawekî bazirganî û babeta danûstandinê, dûr bikin. Ji aliyekî din ve pêwîst e em ji rêyên nerewa û wan rêyên ku li derveyî sînorên mafên cîhanî ne dûr bikevin, bi taybetî ew rêyên ku tundûtûjiyê li xwe digirin, bi çi behane û hokarê be.

**Hevpeyvîn:**
***Rêbwar Kerîm Welî***

# "Agir bi mala wan vêxe“

**Köln (Rûdaw) -** Malpera Cemaeta Gulen a bi navê Herkul.org di Cotmeha 2011ê de vîdyoyek axaftina Fethullah Gulen weşand. Ev axaftina Gulen li baneya (çiftlik) wî ya li Pennyslvania li Amerîkayê hatibû kişandin. Vîdyo bi rojan bibû mijara medyayê, bi taybetî medya PKKê. Gulen di vîdyoyê de rexne li dewleta Tirkiyeyê kiribû ku nikare gerîllayên PKKê têk bibe û behsa rêbazên ka çawe Kurd dikarin ji daxwazên xwe yên nasnameya kurdî ben dûrxistin kiribûn.

**Rexneyên Gulen li dewleta Tirkiyeyê:**

*Dewleta me endamê NATO û Yekîtiya Netewan e û bi hêz e. Çima hêza Tirkiyeyê hebû ku darbeyên leşkerî pêk bîne lê ev 30 sal in nikare wan [mebest PKK ye - Red] têk bibe?*

*Dewlet ev 30 sal in hêj ji heqê 500-600 kesên li çiyayan derneketiye. Bila hejmara wan ne ewqas be, bila 5 hezar kes bin. Na, bila 50 hezar bin. Nêzîkî milyonek leşkerên te hene û ewqas teşkîlata we ya asayişê heye. Istixbarata te heye. Hevkariya we ya bi istixbaratên welatên din re heye. Wan [mebest gerîlla ne - Red] di cihên wan de tespît bikin. Wan projeyan pêk bînin û wê kulma eşqiyayan [mebest gerîllayên PKKê ne - Red] lokalîze bikin û dora wan bipêçin. Bandora wan a li ser civakê bişikînin. Ji civakê re ewlekarî û baweriyê temîn bikin. Xapandina wan a bi wan [mebest gel bi gerîllayan tê xapandin - Red] di bin zextê de bihêlin, qadê vekirî nehêlin ku biçin çiyan.*

**Fethullah Gulen dûre jî bang li aligirên xwe û civaka tirk kiribû ku nefiran li şervanên PKKê bikin:**

*Pêwist e herkes dua bike; Xwedayê min yekîtiya me saz bike. Hinekên dijminiya Xwedê dikin hebin, di nava wan de însanên te islaheta wan kerem nekiriye hene. Yên te islaheta wan pêk neaniye û ew jî wê naxwazin, Xweda wan serobino bike. Tifaqa wan xerab bike. Agir bi mala wan vêxe. Feryad û fîganê bi wan bike. Koka wan bibire, zuha bike û karê wan biqedîne.*

**Derbarê ka Kurd çawa ji PKKê û pê re jî ji daxwazên xwe yên netewî dûr bibin, Fethullah Gulen ev pêşniyar kiribûn:**

*Diviya me mamosteyên ku li wir heta hetayê di nava wê civakê de bijiyan rêkiriban.*

*Xweziya me bi sedan misyonerên ku karekterên xelkê wê derê nas dikin rêkiriba.*

*Xweziya me karmendên tenduristiyê rêkiriban û wan bikariyane di nava rayên wan ên xwînê de bigindiriyan. Li dibistanan wan dersên tenduristiyê bidane û bi şagirtan re ketiban di nav malbatan de, xwe bi rêya wan zarokan bidane îfadekirin.*

*Xweziya me rayedarên asayişê yên bikariyan li derdê wan guhdar bikin rêkiriban. Li wê gorê me istixbarat jî rêkiriban. Me bi wî awayî rêya ku kesên din bikevin wan deran girtiba. Bi wê rêyê me pêşiya kesên biyanî yên ramanên wan xerabûyî ne, yên bazirganiya çekan dikin, yên bazirganiyan madeyên hişber [mebest gerîllyên PKKê ne – Red] dikin bigirta.*

*Pirsgirêka me ya herî mezin ew e ku me ew civak bi dînamîkeke wek olê, ya me bi hev girêbide, bikarnaniye.*

Fethullah Gulen di dawiya van pêşniyarên xwe de diyar dike ku eger dewletê ne ji beriya 30 salan, heta ji beriya 10 salan jî xebatên bi wî rengî bimeşanda, wê pêşiya PKKê bihata girtin û bi vî awayî Kurdên li Bakurê Kurdistanê bi hemû şêweyî ketibana bin kontrola komara Tirkiyeyê.





# Xweş deng dide, lê...

Selahattin Çelik

Li hin welatan hilbijartina “gotinên salê” kevneşopek e. Bêyî şik û guman li Bakurê Kurdistanê biwêja salê “pêvajoya aştî û çareseriyê” ye. Vêga yeka din jî dikeve ser: Kongreya netewî. Gotin hewqas tê dubarekirin, êdî ziviriye şanoyeke reşûsipî.

Gava mirov li gotinên wan dinêre, li ser mijarê têgihiştiyek di navbera hemû partî, kom û kesayetên siyasî de heye, lê çima nikarin pirsê çareser bikin? Çi dijwarî û astengiyên wê hene?

**Diyardeyên dîrokî**

Ji ber nebûna desthilata navendî ya neteweyî û ji ber dabeşkirinê, ne tenê di nav beşên Kurdistanê de, lê di nav herêm û deverên wê de jî bi ziman, çand, civakî, aboriyî û siyasî ve, qelş û cudahiyên mezin peyda bûne. Gava pirsa Kurdistanê tê rojevê, ev faktor weke astengiyan derdikevin pêş. Ne tene ew, dewletên statuko afirandî jî, bi hemû hovîtiya xwe dikevin rêza rêlibergirtinê. Ev gotin beredayî nebûne kevneşop: Şert û mercên beşan û rêbazên têkoşîn û çareseriya wan ji hevûdin cuda ne.

**Astengiyên siyasî**

Ji ber rewşa navborî, partî û bernameyên cuda êdî encameke xwezayî ye. Lê ya xetere ev e: Gellek partî û kesayet statukoyê ji xwe re dikin bingeh, ji erkên hevpar direvin û dibin statukoparêz.

Em dûr neçin: Çima li Başûr PDK û YNK nabin yek? Partî bi bernameyên xwe yên civakî ji hevûdin cuda dibin. An jî nûnertiya ol, kêmnetew û çandên cuda dikin. Lê em dizanin ku bi civakî bingeha PDKê û YNKê yek e. Tişta wan ji hev cuda dike, tenê nakokiyên herêmî û zaravayî ne. Ev nakokî di dîroka nêzîk de sedema şerê navxweyî bû, îro jî li ber dewletbûn û civakeke nûjen astengiyeke sereke ye. Bêguman sedema vê qelşê ne gel e, lê bijareyên xweperest ên herêman in. Herçiqas helwesteke gelemperî ya kurdistanî heye jî, bi polîs, perwerde, dadmendî û tenduristî û heya bi torên telefonê, herêmên wan ji hev cuda ne. Desthilat li gorî vê qelşê ji nîvî ve hatiye parvekirin. Divê em xwe nexapînin, heya rewş wisa be, derbara kongreya neteweyî û dewletbûnê de gotinên wan ên xemilî wê ji baweriyê dûr bimînin.

Li hemû beşan kêşeyên hevşib hene. Partiyên kurd ji yekbûna Kurdan zêdetir, giraniyê didin entegrebûna sîstemên welatên serdest. Sedem çi bin jî, ev helwest wan ji kongreya neteweyî dûr dixe.

**Pirsgirêkên berhema rewşa îro**

Em dîsa ji Kurdistana Başûr destpêbikin. Statukoya Başûr a nîvdewletî di qada navneteweyî de bi fermî tê naskirin. Ew li welatan, dewlet jî li wir nûnertiyên dîplomatîk vedikin. Girêbestên aborî, siyasî, hiqûqî û ewlehiyê girêdidin. Ev gavên pêş ve ne û girîng in. Bêguman hikûmeta Başûr bi wan peymanên girêdêr dikeve bin berpirsiyarî û binbariyan. Ku bi Tirkiye, Îran û Sûriyê re jî ev peyman û girêbest hene. Gava hikûmet sozên xwe neynin cih, bi aloziyên mezin re rûbirû dimînin.

Ji wê yekê; gava em ji partiyên Başûrî daxwaza kongreya neteweyî bikin, divê em diyardeyên rêzkirî li ber çavan bigirin. Ji bo partiyên bi serê xwe, daxwaza kongreyê hêsan e, ji ber ku bêyî binbariyên herêmî û navneteweyî tevdigerin. Ango di mijarê de rewşa hemû partiyan, bi taybetî ya PDK/YNKê û ya PKKê ne yek e. Bi kongreya neteweyî tiştekî ku PKK winda bike tine ye, lê yên din dibe ku gellek tiştan winda bikin.

Em bêjin ku kongre civiya. Herçiqas her beş ji ber taybetmendiyên xwe, xwedî xweserî û serbestiyê be jî, wê mebest damezrandina têkiliyên piştevaniyê, sazkirina dezgeheke hevpar a rêvebiriyê û herwiha yekbûna hemû beşan be. Hingê wê PKK+BDP armanca dewletbûnê û ya “hemwelatiya demokratîk” çawa li hev bîne? An jî wê ala Kurdistanê û “li Kurdistanê rewatiya ala tirk” çawa li hev bîne û hwd?

Pirseke din: Bi ya PKK+BDPê, Ocalan bê şert û merc “bav û serokê” hemû Kurdistanê ye. Ev ne henek e. Li her platformê PKK vê bi awayekî bivênevê û bi darê zorê dide pêş. Divê hemû serokpartî, serokwezîr û serokdewletên me an vê pirsê ji serî ve çareser bikin, an jî li ber li-hespê-siwarbûna-Ocalan, bi siwarbûna kerê qîma xwe bînin.

**Dîsa jî ile kongreya neteweyî**

Gava mirov li mehneyan bigere, sedem gellek in. Ji wê yekê divê mirov bi astengiyên rêzkirî ve girêdayî nemîne. Di dîrokan gelan de civîn hene ku di serî de weke bûyerên biçûk dixuyan, lê bûne bingeha azadbûna gelan û salvegera wan weke cejnê tê pîrozkirin.

**Divê hemû serokpartî, serokwezîr û serokdewletên me an vê pirsê ji serî ve çareser bikin, an jî li ber li-hespê-siwarbûna-Ocalan, bi siwarbûna kerê qîma xwe bînin.**

Mirov dikare bi sporî, çandî, aborî û hwd. destpêbike. Jixwe ji zû ve ev gav tên avêtin; weke civîn û kongreyên komên pîşeyî, şaredariyan û hwd. Divê pêşbirkên sporî û çandî bên sazkirin. Bi taybetî jî derbara ziman û zargotin de damezrandina dezgehên hevpar û navendî pêwîst e.

Di qada navneteweyî de, li ser babetên navborî nûnertiyeke hevpar êdî ji pêwîstiyê wêde, erkeke bivênevê ye.

Ev xebat wê di nav beşên Kurdistanê de têkilî û têkilhevbûna komên bibandor û ya gel zêde bike û wê rê ji berpirsiyariya hevpar a siyasî re veke.

Şertên herêmî û navneteweyî pirsa Kurd bi awayekî giştî tîne rojevê. Mafê ti kesî tine ye ku xwe radestî dijwariyên rêzkirî û pirsên beşekê tenê bike. Dijwarî û astengî çi bin jî, êdî divê hişmendiya kurdistanî û demokratîk serdest be. Têkiliyên biratî û kongreya netewî ne tenê mafekî rewa, lê yekî derengmayî ye. Bakurî, Başûrî, Rojhilatî an jî Rojavayî, eger em bi rastî Kurdistanê dixwazin, divê em bi vîna xwe gavên têkilî û piştevaniyê biavêjin. Gava em di dûv destûrxwestina ji desthilatên serdest de bin, tiştekî em bi dest bixin tine ye, ji bilî koletiyê. Divê maf û biryara azadiya me di destê me tenê de be.

# Opozisyon û Kerkûk



Wladimir van Wilgenburg

Serkirdeyê berçav ê opozisyonê Newşîrwan Mistefa vê dawiyê bangewazî kir ku PDKê û YNKê piştî sala 2003yê derfetek ji dest dan ji bo vegerandina navçeyên cihê nakokiyê.

Kanala KNN a Tevgera Goran jî ji ser zarê wergêrekî berê yê Amerîkiyan li Iraqê, behsa wê yekê kir ku lewma Amerîkiyan wê demê piştevaniya Kurdan nekir, ji ber ku Kurd mijûlî talanê bûn, her çiqasî wê demê Goran bi xwe jî beşek ji YNKê bû, ku qaşo talanî kiriye. Herwiha dema YNKê wê çaxê razî bû ku kêşeya wan navçeyan bi rêya destûrê bê çareserkirin, Goran beşek ji YNKê bû.

YNK û PDK bi hêrs bersiva daxuyaniyan dan, bêyî ku belgeyên wan ên bihêz hebin. Her çiqasî pirr hêsan bû ew bersiva Goran bidin. Ji bo Goran pirr hêsan e ku pirsa şikestina PDKê û YNKê di vegerandina navçeyên cihê nakokiyê li ser xaka Kurdistanê li dijî van herdu partiyan bikarbîne, ji ber ku dijwar dixuye ku êdî PDK û YNK careke din bikarin wan navçeyan vegerînin.

Berê medyaya opozisyonê gotegot belav dikir ku Barzanî Kerkûk firotiye, ew jî ku Nêçîrvan Barzanî çûye ba Malikî li Bexdayê û doz lê kiriye ku pereyên şîrketên petrolê bide. Opozisyon dixwaze di nav xelkê de belav bike ku partiyên desthilatdar tenê li pereyan difikirin. Ev jî hêsan e bê belavkirin, ji ber ku gellek Kurd ne kêfxweş in bi wê rastiya ku hinek kes ji nişka ve dewlemend bûn û hinekên din jî ku pêşmerge bûn û ji çiyê vegeriyane her feqîr man.

Di dawiyê de, her çiqasî YNK û PDK pirr giringiyê didin pereyan, lê siyasetên wan li ser bingeha wê sînordariyê hatiye dariştin ku cografî ye û ji bîra wan neçûye ku Kurdistan bi çar welatên din hatiye dorpêçkirin. Wek encameke vê yekê jî, ti piştevaniyek ji aliyê welatên rojava yan rojhilat lê nayê kirin. Ji ber ku her yek ji wan her çar welatên ku li derdora Kurdistanê ne, pêwendiyên wan an ligel rojava hene yan ligel rojhilat (ango Çîn û Rûsya û welatên din.) Derencama vê rewşê jî ew e ku Kurd tenê wê demê sûdmend dibin, dema li yek ji wan welatan nearamî hebe, wek çawa niha li Sûriyê em vê yekê bi çavê xwe dibînin.

**Wiha dixuyê tekane rê ji bo vegerandina wan navçeyan bi awayekî fermî her ew be ku şerekî navxweyî derkeve û ji Iraqê cihê bibin.**

Goran belav dike ku PDK û YNK naxwazin navçeyên cihê nakokiyê vegerînin, ji ber ku ev bandorê li ser hevsengiya hêzê di navbera YNKê û PDKê de dike (ji ber ku navçeyên li jêr desthilata YNKê firehtir dibin). Herwiha dibêje ku sedema venegerandinê ew bû ku hem Barzanî û hem Talebanî xwestine bibin serok. Lê ev gotin çewt e, ji ber ku di hilbijartinên Iraqê di sala 2010 de PDK karibû 32 kursiyan bibe û YNK tenê 10 kursî birin.

Herwiha Îran, Tirkiye, Sûrî û Iraq jî bi tundî li dijî wê yekê ne ku ew navçe vegerin ser Kurdistanê û di rapirsiyan de jî derdikeve ku pirraniya Erebên Iraqê li dijî ramana vegerandinê ne. Tew eger Erebên Kerkûk û Mûsilê jî qebûl bikin, Erebên din qebûl nakin. Balyozê Amerîkayê jî li Tirkiyeyê heman gotin ji Tirkan re gotiye.

Lewma bawer dikim tiştekî lojîkî ye ku PDK û YNK hewl bidin kêşeyan bi rêya destûrê çareser bikin. Wiha dixuyê tekane rê ji bo vegerandina wan navçeyan bi awayekî fermî her ew be ku şerekî navxweyî derkeve û ji Iraqê cihê bibin. Lê ev jî ne pêkan e. Herwiha Goran çend caran doza diyalogê li Bexdayê kiriye, ku naxuye ev cihê be ji tiştê ku PDK û YNK dikin.

Wan pêşniyar kiribûn ku pêwist e Kurd ji Bexdayê vekişin, lê ne piştrast im ku evê wiha li Bexdayê bike ku siyasetên xwe biguhere û ev pirs tenê ji bo wê yekê bikar bîne ku piştevaniya Ereban ji xwe re zêde bike. Bi baweriya min, Goran lewma behsa wan tiştan dike û li dijî PDKê û YNKê bikartîne, ji ber ku dizane hilbijartin nêzîk bûne. Lê bawer dikim karekî rast nakin.

# Civakeke nîv serdest



Helîm Yûsiv

Civak, bi giştî, mîna kesan, sîmayên xwe ji rewşa xwe û awayê jiyana xwe digirin. Ji ber vê jî gellek sîmayên hevbeş yên her civakê hene, ku wê ji civakeke din cuda dikin û wê dikin xwedî taybetiyeke cihê. Ji ber wê jî kesayet di civakên serdest, aram û demokrat de xwedî xisletin wisa ne ku jixwebibawer, xwedî gotin û mentiqê tevgera wan baş tê fêmkirin. Berevajî wê, dema kesayetiyek di nav civakeke bindest, şikestî û têkçûyî de mezin dibe, bi her awayî radihêje xisletên wê civakê.

Ev dîtinin girover û giştî ne, lê takekesiya mirovên wê civakê jî ji holê ranakin. Her mirovek bi serê xwe dikare xwedî xisletên taybet be û rêyeke li gor dilê xwe, ji bo jiyana xwe bibîne. Dema em li civaka Kurdên Rojava ya îro dinêrin, rewşeke wisa hatiye holê ku ew civak nema civakeke mîna berî du salan bindest e, ji ber ku hêzên xwe yên asayîşê avakirine, birêveberiya bajar û gundên xwe xistine destên xwe, hêza xwe ya çekdarî avakirine û bi her awayî dixwazin xwe bi xwe herêmên xwe biparêzin. Ev aliyeke. Aliyê din ê meselê jî ew e ku hem li welatekî ku ji rejîmeke zorker û xwînrij nehatiye azadkirin dijîn, ew jî mîna civaka Sûriyê bi tevayî nikarin serdest bin, hem jî hêzên rejîmê bi temamî herêmên Kurdan bi dest wan ve bernedane. Mînaka hundirê bajarê Qamişloyê jî berbiçav e.

> **Tinebûna têgihiştineke neteweyî û derûniya pêdiviya bi desthilatdariya yên din, ku di binhişê beşek mezin ji civaka kurd de cih girtiye, rê nade ku Kurd li ser xaka xwe karibin desthilatdariya xwe ya xweser avabikin û xwe bi xwe birêvebibin.**

Vê rewşê civaka kurd ajotiye ber pirsgirêkeke pirr mezin û tevlihev. Ji hêlekê ve hîna bindest in û ji hêla din ve neçar in ku serdestiya xwe li herêm û bajarokên ku di dest wan de ne pêk bînin. Balkêştirîn diyarde di vê çarçovê de ew e, dema asayişên kurd neçar dimînin, yan jî xwe neçar dibînin, ku hinek Kurdên din, nemaze ku çalakvanên siyasî yan çekdar bin, bigirin û wan bixînin girtîgehan de. Li vêderê derûniyeke pirr seyr derdikeve holê. Bê guman ev girtina sê çalakvanên siyasî ya ku li Amûdê, di 17.6.2013 de, rû da ne bûyera yekem û wê ne jî ya dawî be ku wê rû bide. Lê, her cara ku bûyerên wiha diqewimin, aliyê derûnî yê aliyên ku di van bûyeran de derbas dibin derdikeve holê. Yekem bertek ew e ku bi yek derbê re behsa "Baasa kurdî" tê kirin. Xwediyên vê nêrînê ti cudahiyê di navbera Baasa erebî, ku ev çil sal in hebûna Kurdan dide mandelê, û partiyeke kurd de nabînin ku bi dehan şehîd tenê di ber Serê Kaniyê de dane, wan dikin wekî hev.

Sedem ew e ku asayiş bi ser vê partiyê ve ne. Li gor vê dîtinê, nabe ku Kurdek Kurdekî din bigire û gava ku bigire jî ew dibe mîna Baasê. Bi ti awayî serdestiya vê partiya kurd nayê pejirandin. Ev kes heman kes in yên ku çil salî li ber çavên wan her kes dikarîbû be girtin û bê windakirin jî, bêyî ku kesek ji wan dengê xwe bilind bike. Beşekî din ji Kurdan li hember vê nîvdesthilatdariya Kurdan xwe di nav hêzên Artêşa Azad de birêxistin kirine, rahiştine çekan û ji ber ku ev partî xwedêgiravî ajanê rejîmê ye, li dijî vê nîvdesthilatdariyê şer dikin û dixwazin desthilatdariya artêşeke din bînin şûnê. Li gor dîtina wan, ew hemû sûrî ne û divê Artêşa Sûriyê ya Azad dest deyne ser her devera Sûriyê. Beşê dîtir jî hin rêxistin û partiyên kurd in, ku ew jî bi tundî li dijî vê nîvserdestiyê ne, hem nakokiyên wan yên rêxistinî û siyasî hene, hem jî dixwazin wê nîvdesthilatdariyê di nav xwe de fifty fifty parve bikin. Dema nebe jî, naxwe ew nîvserdestî xapandineke û alîkariya rejîmê ye.

Bi ser van diyardeyan de jî kêmtecrûbe û tinebûna zagonên ku li gor wê asayiş tevbigerin, ligel şaşitî û kêmaniyên ku encam didin, hemû bi hev re, vê aloziyê kûrtir û mezintir dikin. Wisa jî civaka kurd ya ku niha nîvserdest bûye, dajon ber bi têkbirina vê nîvserdestiyê ve. Tinebûna têgihiştineke neteweyî û derûniya pêdiviya bi desthilatdariya yên din, ku di binhişê beşek mezin ji civaka kurd de cih girtiye, rê nade ku Kurd li ser xaka xwe karibin desthilatdariya xwe ya xweser avabikin û xwe bi xwe birêvebibin. Ev nayê wê wateyê ku şaşitî û likumandinên vê nîvdesthilatdariyê tine ne. Dema desthilatdar ne Kurd be, her tişt normal tê pejirandin, lê gava desthilatdar dibe Kurd, her kes dike hewar û diqîre "ev kî ye" ku serdestiyê li me bike. Bi vî hişî, bi vê derûniyê, civakek ku nîvserdest bûbe jî, dikare heta hetayê wî nîvê din yê windayî nebîne.

# Kurdistan… Pêkanîna hêlên petrolê ji bo gihiştina serxwebûnê

Jen Alic*

Piştî ku berpirsên hikûmeta Herêma Kurdistanê ragihandin ku hêlên veguhestina petrolê bo Tirkiyeyê di meha Îlona bê de dest bi şandina petrola Kurdistanê bo bazara cîhanê dikin, Kompanyaya Gulf Geystone dest bi gereke nû kir, ku egera wê heye ku baştirîn jêdera petrolê li Herêma Kurdistanê bibîne.

Kompanyaya Gulf Geystone, ku bingeha wê ya sereke li Brîtanyayê ye, ragihand ku di vê heftiyê de ewê dest bi kolana bîra Şêxan 7 bike, bi kûrbûna bêhtir ji 4000 metreyan. Tê pêşbînîkirin ku ev kolan 9 mehan dom bike. Hêviyeke mezin heye ku jêdereke girîng a petrolê bê dîtin. Kompanyaya Gulf Geystone ragihand ku ev jêder egera wê heye ku 10.5 milyar bermîl petrola yedek li xwe bigire. Bi niyaz e jî ku heta sala 2015 her rojê 150 hezar bermîl petrol li vê zeviyê hilberîne.

Kurdistan berê weke cihekî guncaw ku her heftiyekê çîrokeke serketinê di warê petrolê de tomar dike navûdeng vedaye. Herêma Kurdistanê bi giştî 45 milyar bermîlên petrola wê ya yedek a teqezbûyî hene. Ewa ku niha çavên tevan lê ye, ew e ku hêla veguhestina petrola Herêma Kurdistanê ji bo Tirkiyeyê dikare petrola vê herêmê yekser û dûr ji desthilata Bexdayê bişîne bazarên cîhanê.

Piştre beşê vê hêlê heta dawiya meha Îlonê bi dawî dibe. Zeviyên petrola Herêma Kurdistanê jî bi sînorê Pêşxabûr ve tên girêdan. Ev hêl heta sala 2015ê wê karibe yek milyon bermîl petrol bişîne. Ev herêm ewqasî petrola wê heye ku wê karibe vê tibaba petrolê peyda bike. Bi ser de jî bi berdewamiya zeviyên petrolê yên nû tên dîtin.

Niha Herêma Kurdistanê her rojê 30 hezar bermîl petrol bi tankan dişîne Tirkiyeyê. Di meha Adara borî de Herêma Kurdistanê yekemcar petrola xwe ya xav li bazarên cîhanê firot. Bi ser vê de jî berê Herêma Kurdistanê petrola xav dişande Tirkiyeyê û di beramber de berhemên petrolê ji Tirkiyeyê werdigirt.

Ev yekemcar bû ku hikûmeta Bexda ji firotina neteweyî ya petrola Herêma Kurdistanê dilteng bû. Bexdayê ev wek çalakiyeke neyasayî di warê petrol û xazê de daye nasîn.

Kurdistan li beramber navçeyên din ên Îraqê destê wê yê bilind heye. Hîç nebû weke beşên din ên Îraqê û nebû bereya duyem a şerê Sûriyê. Herwiha pirsgirêka tundûtûjiya navxweyî nebû. Beriya demeke kin serokwezîrê Îraqê Nûrî Malikî serdana Hewlêrê kir, da ku di asteke bilind de danûstandinê bike. Ev serdana Malikî bo Herêma Kurdistanê ji sala 2011ê ve yekemcar bû. Ev jî nîşana wê yekê ye, ku danûstandin weke ku çawa li ser axa Kurdistanê birêveçû, wiha jî li gor mercên Kurdan bûye.

Gelo Bexda dikare tevgera petrol û xazê li Kurdistanê ragire? Bi baweriya min na. Her dema ev hêla petrolê kete kar, êdî dawiya alîkariyê tê. Bexda jî amraz û samana wê ya wê yekê nîne ku karibe dijîtiya wê bike.

**Jêder: Malpera Oil Prices**

**Jen Alic damezrênerê ISA Intel e, ku şirketeke navdewletî ye û bi karê zanyarî, rawêjkarî û şiroveya jeopolîtîk radibe.*



## Abonetiya Rûdaw

Ez dixwazim bo dema
☐ şeş mehan ☐ salekê ☐ vekirî
bibim aboneyê/ya rojnameya Rûdaw.

Rojnameya min heftane bişînin vê navnîşanê

Nav :
Paşnav :
Navnîşan :

Telefon a min :
E-Mail a min :

Buhayê abonetiyê ji vê kontoyê bikşînin;

Hejmara kontoyê :
Şîfreya bankê (BLZ) :
Bank :
Xwediyê kontoyê :

Dem û cîh: ____
Destnîşan: ____

Anjî ezê bihayê abonetiyê bişînim ser kontoya Rûdaw ya li jêr û dekontoya wê ji navnîşana Rûdaw re bişînim.

• Bihayê abonetiyê salekê ji bo nav **Almanyayê: 60 Euro**

Ji bo abonetiya derveyî Almanyayê, pêwendî ligel Rûdaw deynin.

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln / Almanya
***info@rudaw.eu***

Aboneti

**Hesabê Rûdaw**
**Bank** Deutsche Bank Köln
**Konto Nr** 2450161
**BLZ** 37070024

**Newzad Mehmûd**
*Silêmanî*



# Kurd ji bo kar vedigerin Kurdistanê

Gava Cemal behsa bêkariyê dike, nerîneke wî ya berevajî heye ji wê roja ku xatirê xwe ji hevrêyên xwe xwest û ji wan re got: "Dibe ku em êdî qet hevdu nebînin." Niha ew li şîrketeke Silêmaniyê kar dike û rojane hevrêyên xwe dibîne. Wî hest kir tiştê ku dixwaze ew dikare li Kurdistanê zûtir ji Ewropayê bi dest bixe.

Cemal Mihemed (27) berî 8 salan bi qaçaxî gihişt Yewnanistanê û ji wir jî pereyekî zêde qerc kir, da ku qaçaxçî wî bibin Almanya, "ji ber ku saleke bêkariyê jiyan li ber çavê min reş kir". Lê li Ewropayê jî wî nikaribû karekî berdewam bibîne.

Niha Cemal li şirketekê şofêr e û mehaneya wî baş e, herwiha êvaran jî dikare biçe nav malbata xwe. Bi baweriya beşek ji welatiyên ku ji derve vegeriyane Kurdistanê, kar cihê xwe guherandiye. Ji ber ku şepêla bêkariyê li çend welatên rojava belav bûye û siyaseta tundkirina sînoran li ber koçberan hertim tundtir dibe. Herwiha proseya hilberînê û fermîkirina pêwendiyên çend welatên rojava ligel Herêma Kurdistanê derfetên kar zêdetir kiriye.

Beriya salekê Cotyar Silêman Axa ji Norwêcê vegeriya Silêmaniyê. Her çiqasî Cotyar wek kesekî bi hezkirina welatê xwe sermest dipeyve, lê dibêje ku bêkarî û dijwarbûna jiyanê ew beriya 15 salan neçar kir ku wê rêyê hilbijêre: "Dema kar hebe û mirov bikare jiyana xwe îdare bike, mirov vedigere." Mala Cotyar li havîngeha Sîteke ya nêzîkî Silêmaniyê ye û piştî ku vegeriya wî dikaneke dermanên xwezayî li bazara Kasomol li Silêmaniyê vekir. Li gor Cotyar, eger kesek bixwaze kar bike, "kar heye ku bike û dikare bijî", îcar dibêje ji ber çi Somalî vedigerin welatê xwe ku şer û wêrankarî lê heye "lê çima em venagerin welatê xwe, nemaze ku rewşa me pirr ji ya wan baştir e." Malbata Cotyar niha pirr mijûlî kar in. Jina wî baxçeyekî zarokan vekiriye û Cotyar jî rojane diçe dikana xwe.

Statîstîkên fermî û nefermî derbarê Kurdên ku ji Iraq û Herêma Kurdistanê ber bi welatên rojava û Amerîkayê koç kirine, li ba hikûmet û ti saziyeke sivîl jî nînin. Ev jî vedigere nebûna dezgeheke hikûmî ya taybet bi karûbarên penaberan. Berpirsê Federasyona Penaberên ji Iraqê li Herêma Kurdistanê, Amanc Ebdulla, behsa sê celebên vegera penaberan ji derve bo Iraq û Herêma Kurdistanê dike. Celebek heye ku bi kotekî tên dersînorkirin û ti rêxistinek tine yan nikare parastina wan bike. Celebekî din jî ew e ku kar bi dest wan nakeve û alîkariyê wernagirin û neçar dibin vegerin, "lê celebê sêyem ku rêjeya wan ne zêde ye, wiha fêm dikin ku li welatê wan kar, jiyan û aramî heye."

Amanc Ebdulla behsa wan pirsgirêkan dike ku dûre penaber di dema vegerê de rastî wan tên û dibêje zarok û malbatên wan hînî seqa û jîngeh û sîstem û xwendina wir bûne: "Pêwistiya wan bi xizmetguzariya zêdetir a hikûmetê heye ji bo xwendina zarokên wan û bidestxistina kar."

Li gor gotina Amanc, zêdeyî 3 milyon Iraqî li welatên cîranên Iraqê û welatên rojava niştecîh in û heta niha jî ti dezgeh û fermangehek nîne ku karûbar û pêdiviyên penaberan lêkolîn bike.

### 1800 milyoner û 30 milyarder

Li Herêma Kurdistanê ji ber proseya hilberînê û hatina bi sedan şîrketên biyanî derfetên kar pirr bûne û rojane ji navçeyên navend û başûrê Iraqê, Îran, Tirkiye, Bengladeş, Etyopya, Filipîn, Hindistan û Pakistanê xelk berê xwe didin Herêma Kurdistanê. Li gor amareke yekîtiya veberhêneran, li Herêma Kurdistanê ji pêşiya destpêkirina proseya hilberînê û heta niha 1800 kes bi rêya hilberînê serweta wan gihiştiye zêdeyî 5 milyon Dolaran û 30 kes jî serweta wan zêdeyî yek milyar Dolarî ye û di nav projeyên hilberînê de jî heta niha 183 hezar kesan derfeta kar dîtine, ku mebest ji wan karkerên wan projeyan in.

Her li gor wê amarê, heta niha 200-300 karxane li Herêma Kurdistanê hene. Lê wek berdevkê yekîtiya veberhênerên Kurdistanê Yasîn Mehmûd got: "Da ku derfetên kar zêdetir bibin, pêdiviya me bi 800 karxaneyan heye."

# Çareseriyeke nû ji bo pêvedana mêşan



Pêvedana mêşan yek ji tirsa gellek mirovan e. Dema mêş bi mirovan vedidin, rêjeyek mezin ya mirovan eger neyên tedawîkirin, bi metirsiyên cûrbicûr re rûbirû dimînin.

Pisporan di vê bareyê de xebateke biyolojîk ya taybet pêk anîn. Piştî lêkolîneke demdirêjî, zanyaran destkarî li ceneke mêşê kirin. Bi vê destkariyê li şûna mêş bi mirovan vebidin, berê xwe dan zindîwerên din. Seroka wê tîma pisporan Lisly Voshal di vê bareyê de diyar kir ku di encama wê destkariyê de mêş tê xapandin û êdî bi mirovan venadin.

Cena ku destkarî lê hatiye kirin wekî orco tê binavkirin. Ev cen ji hesta bêhnkirinê ya mêşê berpirsiyar e. Bi destkariya li ser vê cenê şaneya şîrovekirina mêşan têvlihev dibe û çalakiya wan a di vê bareyê de lawaz dibe.

Di rewşa normal de mêş di rewşa pêvedanê de di navbera mirov û zindîwerên din de bêhna mirov ji bo pêvedanê hildibijêre. Lê piştî destkariya cenê, mêş hesta bêhnkirin û qebûlkirina mirovan ji dest dide û êdî bêhna armanca wê ya pêvedanê dibe zindîwerên din. Di vê bareyê de seroka tîma zanistî Lisly Voshal da zanîn ku mêşên cenên wan hatin guhertin, êdî bi taybetî ji bo pêvedanê berê xwe nedan mirovan û mirov ji bala wan derketin.



# Bexşîna xwînê te saxlem dike

## “Egera derketina krîza dil ji sedî 88 kêmtir dike”

Bexşîna xwînê ne tenê ji bo saxlemiya kesê wergir baş e, herwiha sûda wê digihije saxlemiya kesê xwînbexş jî.

Li gor lêkolînan, bexşîna xwînê egera derketina krîza dil, mêjî û pençeşêrê jî kêm dike. Di bexşîna her şûşeyeke xwînê de derdora 650 kalorîn tên şewitandin û ev yek bandorê li ser daxistina giraniya laş dike. Ji bilî vê yekê bexşîna xwînê dibe sedema daxistina asta hêsinê zêde yê laş. Hêsinê zêde giraniya xwînê zêde dike û barê dil û rayên xwînê girantir dike. Ev zêdebûna hêsinê laş jî dibe sedem ku metirsiya rûdana pençeşêrê zêdetir bibe. Herwiha hêsinê zêde pêvajoya bilindbûna kolîsterolê zêde dike. Ev jî di dawiyê de dibe sedema derketina nexweşiyên dil û rayên xwînê.

Li gor lêkolîneke kovara akademîk ya bijîşkên Amerîkayê, eger kesên temenê wan di navbera 43 û 61 salan de xwînê bibexşînin, metirsiya krîza dil bi wan re kêmtir dibe. Ji hêla din ve lêkolîneke di heman bareyê de ku li Fînlendayê li ser 2682 kesan hatiye pêkanîn, diyar dike ku xwînbexş li gor kesên din ji sedî 88 kêmtir bi krîza dil dikevin.



### Mercên bexşîna xwînê

Endama Xaça Sor a Almanî, Dr. Kristin Zweiger, derbarê heman babetê de diyar kir ku carcaran di dema bexşîna xwînê de sergêjî bi xwebexşan re rû dide. Lê bi amadebûna bijîşkan di demeke kurt de ev sergêjî tê tedawîkirin. Dr. Kristin herwiha bal kişand ser wê yekê ku kesên tatû (nexş) li ser laşên wan be, pêwist e xwînê nedin. Sedema vê yekê jî girêdayî metirsiya hesasiyeta zûwergirtina vîrûsan û mîkroban a kesên nexş li ser laşê wan heye ye.

Ji bilî vê yekê bijîşk destnîşan dikin ku pêwist e mîdeya kesên xwînbexş vale be lê ji bo gêjbûn rû nede divê ew kes di çarçoveya ku bijîşk ji wan re diyar kiriye de xwarin pêşiya çend seetên xwaribin.

## Xaçepirs

**Çeperast: 1-** Pincarek xweş – Kesê yekem – Xwarinxane, restorant. **2-** Girtin, tengkirin, şidandin – Ard, xwarin, qût. **3-** Heywanek – kesname, belgeya naskirinê – Zewac, zewicîn. **4-** Erda rast û vekirî, deşt (berepaş) – Astengî, rêlibergirtin – Navekî mêran, derba kêr û fîşekê. **5-** Mirov, şexs (berepaş) – Ceh û genimê hêrayî, toz. **6-** Nex, ben (berepaş) – Kesê ku diçe cehnemê. **7-** Mehel, gurz, destek – Deng, awaz (berepaş). **8-** Cîhgirê muxtar – Balafir, firoke. **9-** Orgeneral, hacetek muzîkê – Hacetek telefon û înternetê (berepaş). **10-** Cûreyek trênê.

**Serejêr: 1-** Degbêjekî Kurd. **2-** Bindestî, hêsîrî – Bi Almanî bexçê heywanan. **3-** Tewandina “kewar” ê (berepaş) – Devjêberdan, dûrketin, çûn. **4-** Tîm, grûp – Da, ji vir û pê de, êdî – Bi Ingilîzî “çûn”. **5-** Kurt, ne dirêj (berepaş) – Kembera berik û fîşekan. **6-** Kurtenîşana “Grichenland” ê – Navekî jinan. **7-** Mirovatî, beşerîyet. **8-** Hacetek muzîkê, cûreyek def ê (berepaş) – Pîs, xirab, sexte. **9-** 100 insan, sed beşer. **10-** Rizgarîxwazên Netewîyên Kurdistanê (berepaş) – Bax û bexçê bihuştê. **11-** Amnestî Înternatîonal. **12-** Paytextê Sûrîyê. **13-** Heywanek qurbanê, çêlîkên mîhê (berepaş). **14-** Vexwarinek sereke, bê wê jiyan nabe. **15-** Cahil, xeşîm, nezan, ciwan. **16-** Tuneye, nemaye (berepaş)

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | | | | | | | ■ | | | ■ | | | | | | |
| 2 | | | | | | | | | ■ | | ■ | | | | | |
| 3 | | | | | | ■ | | | | | | | | ■ | | |
| 4 | | | | | ■ | | | | | | | ■ | | | | |
| 5 | | | | ■ | | ■ | | | | ■ | | | | | | |
| 6 | | | ■ | | | | | | | | | | | | | |
| 7 | | ■ | | | | ■ | | ■ | | | | | | | | |
| 8 | | | | ■ | | | | | | | | | | | | |
| 9 | ■ | | | | ■ | | | | | | | | | | | |
| 10 | | | | | | | | | | ■ | | | | | | |

### Bersivên hejmara 203

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | B | E | X | T | E | W | A | R | Î | ■ | A | S | E | T | O | N |
| 2 | E | S | A | S | ■ | A | L | Î | K | A | R | Î | ■ | O | R | A |
| 3 | R | A | ■ | A | V | ■ | A | G | | M | A | N | Î | D | A | R |
| 4 | T | N | O | M | ■ | S | ■ | F | A | B | R | Î | K | ■ | B | Û |
| 5 | Î | S | T | ■ | Ş | E | B | E | K | E | | | | | | |
| 6 | L | ■ | A | M | A | D | E | K | A | R | | | | | | |
| 7 | X | A | N | E | D | A | N | ■ | D | Î | | | | | | |
| 8 | W | Î | T | W | Î | T | ■ | Î | ■ | N | | | | | | |
| 9 | I | ■ | Î | Z | ■ | ■ | O | N | E | ■ | | | | | | |
| 10 | R | A | K | Î | D | E | F | ■ | M | Û | | | | | | |



Rojbûn an jî şahiya te ye û tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî? Ji me re bişîn: info@rudaw.eu



# Mesûd dibe stêrkê futbolê?

Mesûd Baker 3 salî ye û li bajarê Almanya Duisburg hatiye dinyayê. Dayika Mesûd ji bajarê Sêrtê yê Bakurê Kurdistanê ye û bavê wî ji bajarê Efrînê yê Rojavayê Kurdistanê ye. Ew hê ji niha ve bi zimanên kurdî, almanî û tirkî dizane. Mesûd gellekî ji futbolê hez dike. Ew herdem bi bavê xwe re futbolê dilîze. Zarokên di temenê wî de bi taybetî ji temaşekirina fîlman hez dikin lê ew ji temaşekirina futbolê hez dike.



# SEMASÎ

Em gellek caran di televizyonê de temaşe dikin an jî em di pirtûkan de dibînin. Bêvila wan ya tûj, devê wan yê mezin û diranên wan ên wek birekê hergav xofê dike dilê me. Ez behsa semasiyan dikim. Semasî di nav avê de dijî, mezin û dirinde ye. Di nav deryayê de digere, çi bibîne dixwe. 250 şêweyê semasî hene, lê tene 27 şêweyên wan êrişî mirovan dikin. Bejna semasiyan di navbera 30 cm û 14 m tê guhertin. Carbicar giraniya wan digihije 18 tonan.





# Hejmaran bigihîne hevdu û wêne tamam bike!



# Karîkator

